Demokrasî bo Îranê
Hejmar:8 Juna 2004'e Zayînî

agiri

Otonomî bo Kurdistanê
Pûşpera 1383'e Rojî

Rojnameyeke siyasî û çandî ye
Partiya Demokrata Kurdistana Îranê diweşîne

# Kurd di pêşeroja Îraqê de

Li mêjwe ye ku gelê Kurd li Kurdistana Îraqê li dijî dîktatorî û pêpes kirina mafên neteweyî yên xwe serhildaye û di vê derheqê de jî goriyên zaf dane û rondik û xwîneke zor jî rêjandine. Aware bûna bikom û bi milyon kesî dîtî ye û tûşî bûyerên weke Enfal û kîmyabaranê hatiye û hewrîşê mirin û malwêrankiyeke zaf bûye. Mixabin ji hemû ew perçiqandin û êş û azarane de dengek bo berevanî kirin ji vî gelî nehatiye bihîstin û her yek ji dewlet û kom û civatek bi hêceta parastina berjewendiyên xwe li



hemberî ew hemû zilm û zora ku li Kurdan dihat kirin, bêdeng man, çavên xwe ji reftarên dijî mirovî yênshilata dîktatoriyê di Îraqê de miqandin.

**Dom: R. 2**

## Azad bûna 4 Perlemanterên Kurd li Tirkiyê



Her 4 Perlemanterên Kurd yên Partiya Demokrasiyê (DEP)'ê ku bi 15 salan cezayê girtinê hatibûn mehkûm kirin, roja çarşemiyê 20.03.1383'e Rojî (09.06.2004) serbest hatin berdan.

**Dom: R. 11**

## Îşkence çeka sereke ya Komara Îslamî



**Rûpela 12**



*Fîlm çêkerê Kurd Ferhad Erşedî:*

## Kurd Ne xwediyê Sînemayê ne

**Rûpela 17-18**

## Weşana bi zimanê Kurdî di Telvîzyon û Radyoya Tirkiyê (TRT)'ê de

**Rûpela 18**




| | | | |
|---|---|---|---|
| Pirsa neteweyî û cihê wê di cîhana nû de 3 | Birêve çûna konferansa: Kurd, yek netewe - çar dewlet – çi pêşrojek? 5 | Demokrasî, biha û piratîka wê *(Beşa 5.)* 6 | 24'mîn salvegera damezrandina Radyo Dengê Kurdistana Îranê 10 |

# Kurd di pêşeroja Îraqê de

**Dom: R. 1**

**Zanyar**

Dema ku serberedayî û dîktatoriya deshilatdariya Îraqê berçêla welatên superhêz jî girt û berjewendiyên wan jî xistine xeterê de û biryara hiloşandina hikûmeta Bees û Seddam Husên dan, bo vê meremê jî hevalbendiyek ji parek ji welatên cîhanê pêk anîn, gelê zilimlêkirî û mafxwarî yê Kurd li Îraqê jî hembêza xwe bo vê gavê vekir û di pêvajoya hiloşandina deshilata dîktatorî de bi destê tijî, bi şiyan û karîneke tewaw û netirsane pişikdarî kir û karê hiloşandina rejîma Bees û serkevtina hevalbendan hêsantir û misogertir kir.

Piştî cihgir bûna hêzên hevalbendan li Îraqê, Kurdistan ne her herêmeke aram û hêmin bo wan hêzane bû, belkî giraveke hêmin û cihê pêşwazî kirin bi gul û vehewiyana wan bû û ceribandina 12 salên xwe rêvebirinê û sor bûn li ser azadî û mafên mirovî di Kurdistanê de bi peyvên karbidestên paye bilind yên welatên hevalbend dikarî bibe bi mînakek bo hemû Îraqê û Îraqeke bi vî awayî jî bo hemû deverê.

Piştî pêkhatina Civata Deshilat a Îraqê û ragehandina deshilata demî di wî welatî de, Kurdan roleke berbiçav lîst û cehd û tekoşîneke zaf ji bo cihgir bûna Îraqeke demokratîk, Federal û pir alî, ku mafê hemû rûniştevanên welêt û mafê neteweyî yên gelên Îraqê bike. Ew cehd û tekoşîna ku heya qasekê di destûra demî ya Îraqê de ku bi pejrandina Civata Deshilatê û hevalbendan gihîştibû, reng veda û hate cih û di dilên gelê Îraqê de bi taybet gelê Kurd de hêviya ewê ku êdî bi hevwelatiyên derece 2 nahên hesibandin û maf û azadiyên wan dê misoger bibin û bi fermî dê bihên nasandin û bersîva wê havalbendiya paqij û hevkariya tev aliyane dê bi başî û pozetîv werbigirin.

Aloz bûna herêmên navîn û Başûrê Îraqê û asteng afirandin bo hêzên hevalbendan di van herêmane de ku destê aliyên dijî azadiya Îraqê û serbestiya gelên Îraqê bi eşkere têde xuya bû û rewşeke wiha afirand ku qurbaniyeke zaf û xwîneke zor bihête rijandin. Di wê rewşê de Kurdistan herwisa hêmin û gelê Kurd jî her aştîxwaz û piştevanê lîstina rolê hevalbendan bû.

Bi nêzîk bûna dema veguhastina deshilatê bo Îraqiyan bi xwe û pêşkêş kirina gelaleyekê bi Konseya Ewlekariyê ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, ji aliyê hevalbendan ve derheq pêşeroja Îraqê, eyan bû ku Kurd li Îraqê weke hewce careke din jî nehatiye li berçav girtin û xwast û daxwazên sereke yên wan jî nehatine li berçav girtin.

Di wê gelaleyê de tu îşareyek bi destûra demî ya Îraqê ku têde îşare bi Kurd û mafên wan hatibû kirin, nehatiye kirin. Kurd di postên sereke yên dewleta demî a Îraqê de cihê jêhat jêre nehatiye destnîşan kirin û bi giştî navek ji Kurd û li Îraqekê ku ji du neteweyên sereke pêk hatiye, ne hatiye holê. Ev helwêst û pêşniyaz kirina gelaleya han di rastî de gelê

**Bêdeng bûn û ne xuya kirina nerazî bûn û dijberiya dewletên cîrane Îraqê, welatên Erebî û ne jî Şîiyên Başûrê Îraqê ku dijberî Kurdan e, çi gazinde û rexneyek ji gelaleya pesin kiriye Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, bê par kirin û ji bîr kirina Kurdan dide selimandin**

Kurd berengarî nigeraniyek taze kiriye û bê emegî û bê wefatiya hevalbendan derheq bi Kurdan nîşan dide. Lewma ji bo nerazî bûn jî vê helwêstê birêzan Mesûd Barzanî û Celal Talebanî serok û rêberên du Partiyên sereke yên Kurdistana Îraqê di nameyekê de bo serok Komarê Emerîka ew rexne û lome û gazindeyên xwe û nigeraniya gelê Kurd dan zanîn û hevdem jî pê li ser dostî û hevalbendiya xwe ya tevî Dewletên Yekbûyî yên Emerîkayê danîn. Karbidest û rayedarên hizbî û hikûmî yên her du îdareyên Hewlêr û Silêmaniyê jî di axaftinên xwe de nerazî bûna xwe û xelkê Kurdistanê eşkere kirin û dan xuya kirin ku peyrewiyê ji her terze biryarekê ku Kurdan ji bîr bike û mafê wan li berçav negire, nakin û nemaze vekêşan ji deshilata nihoyî ya Îraqê jî xistine berçav.

Bo wê ku em ji kakila gelaleya pêşniyaz kirî ji aliyê hevalbendan û pejirandina wê ji aliyê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî ve agehdar bin ku heya çi qasekê Kurd hatine ji bîr kirin, ev hinde bes e ku em dibînin ne welatên cîran û dijî Kurdên Îraqê û ne welatên Erebî û ne jî Şîiyên Başûra Îraqê ku her yek ji wan bi terzekî dijberiya misoger bûna mafên Kurdan dikirin û dikin, kêmtirîn rexne û gazinde ji vê gelaleyê ninin û eve jî dide xuya kirin ku di gelaleya pêşniyaz û pesendkirî de zêdetir ji wê ku demokrasiya soz û peymandayî bi gelên Îraqê û misoger bûna mafê gelê Kurd bihê berçav girtin, nêrîn û razîbûna neyarên demokrasiyê û misoger nebûna mafên neteweyî yên gelê Kurd hatine li berçav girtin û diyarî û destxweşane bi neyarên hevalbendan û mafkujî û pişt guh xistin jî bi hevalbendiya sadiqane û micid ya Kurdan hatiye dayîn.

Her çiqas piştî nerazî bûna aliyên cur bi cure Kurd li Îraqê û hejmarek ji rayedarên payebilinde Emerîka û Berîtaniya bi têkliyên tevî rêberên Kurd ve heya qaseke zor û peyman dane ku Kurd nahê ji bîr kirin û ji ber çavan bizir nabe, û herwiha di axaftinên Serok Komar û Serok Wezîrê vî welatî de emegdarî bi yasaya demî ya Îraqê ducarkî bûye û hatiye arxayîn kirin. Lê bi li berçav girtina giştî ya vê rewşê û ew paşekişeyên ku di vê dawiyê de derheq bi Kurdan û mafê wan ji aliyê hevalbendan ve hatine kirin û ew dijberiyên ku ji aliyê welatên cîran û Erebî û kesên weke Sîstanî derheq bi Kurdan tên kirin, mafê gelê Kurd li Kurdistana Îraqê ye ku derheq bi pêşeroja Îraqê û qedera Kurdan di wî welatî de nîgeran û perîşan be.

Her çiqas di gelaleya pêşniyaz û pejrandî de îşare bi Federalî bûna Îraqê - bêy wê çendê ku eşkere be çi terze Federalî û li çi bingehekê dibe - hatiye kirin û di gel wê de jî Parlemana Herêma Kurdistanê û hêzên siyasî ev gelale li ser hev baş nirxandine, serbarê vî halî hêj nîgeraniya gelê Kurd li cihê xwe de ye û cehda Kurdan û asta dîtina rastîn ya hevalbendan û hikûmeta nihoyî ya Îraqê ye ku dikarin vê nîgeraniyê verewînin yan jî kêmtir bikin.

# Pirsa neteweyî û cihê wê di cîhana nû de

(beşa 1)

Kerîm Perwîzî

Mijara bi cîhanîbûnê, mijarek e ku di kom û komeleyên çandî, hizrî û siyasî de qala wê tê kirin û hetanî bo nava qatên cur bi cur ên civakan jî çûye. Hemû rojan ji kanalên cur bi cur û hincetên cuda de bas ji cîhanîbûnê û cîhana nû û çaxeke din tê kirin û hemû jî li bandora wê li ser mijarên cur bi cur yên jiyan, aborî, ramyarî, pêwendiyên civakî, li ser bîr û hizrên xelkê û li ser ramanên mirovahiyê dipeyvin. Cîhaneke nû ji dayik bûye û ev reng veguherîn û serhildana cîhana nû di nava avahiyên kevn de, bûye sedema aloz û ne ron bûna wê pirsgirêkê. Têgihîştin ji naveroka vê mijarê û zal bûn bi ser metodên cur bi cur de hewcehî bi demê re heye. Divêt çaxek derbas bibe, hetanî gelek ji metodên ne xuya bihên nasîn û şiyan û karîna wan bihête bikar anîn.

Bo gelê Kurd û hêzên siyasî û hizirmendên Kurd, nasîn û hişyarî û zana bûn derheq vê mijarê û zanîna şaşiyan û bitirs bûna wê bo civaka Kurdî, giringiya jiyanê û hewcehiyeke dîrokî heye, hetanî ku bi zanist û hişyarî li ser wê cîhanê ku mijûl e ji nû ve tê darêjtin, bikare xwe bo cî bi cî kirina rola taybet di wê de amade bike.

Bi giştî nasîn derbarê vê mijarê her weke hate gotin, hewcehî bi derbas bûna demê û ron û kifş bûna aliyên tarî û nexuya yên wê heye. Lê dibe ku bi xwendina ewa ku hetanî niha di vî warî de hate gotin û bi balkişandin li ser wan bûyerên ku heya niha qewimîne û di rastî de bi şirove kirina amûr û alavên pêk hatina vê mijarê, divêt ku em di hizra xwe amadekirin bo pêşerojê de bin.

Rûçikên cuda yên cîhanîbûnê, tesîr kirinên cur bi cur û aliyên cur bi cur yên aborî, ramyarî û civakê yên wê bi awayekî ne,ku her yek ji wan baseke kûr û xwendineke berfireh hildigire. Lê di vê derfeta kurt de, hewl tê dayîn ku dergeheke biçûk li ser bandora cîhanîbûnê li ser huwiyeta neteweyî bihê vekirin û nemaze ew liv û tevgerên ku vê mijarê bo gelên bindest aniyê, bihên dest nîşan kirin.

Lê berî ku em biçine nava basê, pêdiviya me bi nasandina cîhanîbûnê heye. Pênaseyên cur bi cur ji cîhanîbûnê hatine kirin û bîr û raman di vî warî de dijber in. Hin kes cîhanîbûnê di danana vê diyardeyê li ser têkiliyên navbera dem û cih de li berçav girtibe.

"Cîhanîbûn pêkhatiye ji pêvajoya bertenk bûna her çiqas pitir a dem û cihê ku di rêya wê de, gelên cîhanê kêm û zêde û bi awayekî heta qasek hişyar û agah di civakeke cîhanî a yekbûyî (wahid) de tevlihev dibin". (1)

Yan her weke ku **Şult** di pirtûka **lênihêrîneke kûr bo mijara cîhanîbûnê** de aniye: "Cîhanîbûn weke ji holê ra kirina herêman tê hesibandin




pêşdeçûn û berfirehiya dan û standin û têkiliyên navneteweyî de dizanin, hin kesên din cîhanîbûnê aborî û di rastî de bi rabûna gumrik û ji holê rabûna sînorên aborî dizanin. Desteyeke din jî bi Cîhanîbûnê biha û desketên mirovahiyê û nemaze nirx û bihayên Rojavayê dizanin.

Baştirîn û jêhatîtirîn pênasa ku di gel vê mijarê û bandora wê de bihê, pênaseyek e ku şûn ku nivîskarê vê pirtûkê di cihê vê peyvê de pêşde çûna têkiliyan û "serwe bûna herêm a" navbera xelkê bi baştir dizane. Bi vî awayî bi Cîhanîbûn pêkhatiye ji curek guhertinên berfireh di naveroka keş (feza)a civakî de". (2)

Ew bo ron kirina vê pênaseyê komek ji çalakiyên nava jiyana civakî a hevdem weke mînak tîne:



# Pirsa neteweyî û cihê wê di cîhana nû de

**(beşa 1)**
**Dom: R. 3**

"Bo mînak, di warê pêwendiyan de, qasekî berfireh ji têkiliyên jor ên herêman ji rêya "tonel"ên hewayî ve, hêlên elektero mexnatîsî û lerizînên ronahiyê tê girtin. Têkiliyên cîhanî, ev keys û derfeta bo gelên cîhanê pêk aniye ku heya qasekê bêrawestiyan, zû û bê ji berçav girtina mewdayên navbera dever û tixûbên cuxrafî, bi hev re têkiliyê bigirin . . . Têkiliyên dem dirêj, telgeraf, telefon, posteya wêneyî, teletekst, konferansên vîdeoyî û hêlên kompyuteran, karîna dan û standina kirina zû ya nîşaneyan, deq, wêne û deng di navbera xelkê de bê li berçav girtin hinceta herêmiye wan yan dem û tixûbên navbera wan bexşîne". (3)

Bi vî awayî em digihîjine vê pênaseyê ji cîhanîbûnê ku cîhanîbûn pêk hatiye ji pêşketina pêwendiyên serwe ên herêmî yan berfireh bûna têkiliyên negirêdayî bi cuxrafiyayê ku di çarçoveya demê de derbas bûne, bi awayekî ku têkiliyên di navbera du cihên li vî û wî aliyên cîhanê de ku berê çend sal dikişand, niha li ber şoreşa teknolojîkî di çav niqandinekê de cî bi cî dibe.

Ji bo ron bûna bandor danana vê mijarê li ser pirsgirêk û huwiyeta neteweyî, me hewcehî bi pênase kirina huwiyeta neteweyî heye. Lê bo nasîna huwiyeta neteweyî, di pêşde emê huwiyet pênase bikin, heta ku em bizanibin ku merem ji huwiyetê çiye?

Huwiyet pêk hatiye ji pêvajoya wate çê kirinê li ser bingeha taybetmendiyekê yan civakekê bi hev re girêdayiye xasmanî ku li hember çavkaniyên watedare din de pitir biha û giringî pêre tê dayîn . . .. Mirov dikare du xasmaniyan bo huwiyetê nav bibe: 1. Huwiyet cudahî dana di navbera **Ez** û **Me** bi **Ya Din** û **Yên Din** de ye û 2. Huwiyet bi giringtirîn çavkaniya nasîn, soz û peyman, hest û rêxistina liv û reftarên giştî (bi kom) û tak tê hesibandin". (4)




"Her demekê ku endamên kom û civakekê bi awayekî hişyar û agahane xwe ser bi girûpekê bizanibin ku di rabûn û rûniştina tevî hev pergaleke hevpare sembolîk, wate û bi pûte hebin, huwiyeteke çandî ya hevbeş hene". (5)

Di encamê de huwiyeta neteweyî jî pêvajoyek e ku têde komek ji mirovan bi li berçav girtina hinek xasmaniyan, xwe bi yek netewe dizanin. Li gorî wan lêkolînên ku hatine kirin û bi li berçav girtina pêvajoya pêk anîna neteweyên cur bi cur, çend xasmaniyên giring, bûn bi çavkaniya huwiyeta neteweyî, weke: **Ziman**, **Ol**, **Regez**, **Dîrok** û **Herêma Cuxrafî**.

"Netewe weke metodek di dîrokê de çaxekê derdikeve ku bi niştîman (welat) yan herêmeke cuxrafiye taybet ve hatibe girêdan". (6)

"Neteweyek bi tekez kirin li ser ew xasmaniyên çandî ku dibe sebeba cuda bûna wan ji yên din, xwe pênase dike. Ew taybetmendiya bi nav taybetî, mumkin e tevî dem, rewşt û tîtal, metodên huner, ol, nijad û hwd … de pêwendî hebe". (7)

Dirêjî heye

# Li Hewlêr teqîn: kesek mir û 10 kes jî birîndar bûn



Bi sedema teqîna bombrêj kirina otombêlekê li ser rêya 60 mêtrî li Hewlêrê hevwelatiyekî Kurd jiyana xwe ji dest da û nêzîkî 10 kes jî birîndar bûn. Di teqîna han de Wezîrê Rewşenbîrî yê Hikûmeta Herêma Kurdistanê (îdareya Hewlêrê), Mehmûd Mihemd bi tundî birîndar bûye.

Teqîn demjimêr 9:30 ya pêşnîvroya roja yekşemî, 07.04.1383'ê ya Rojî (26.06.2004), li hember Wezareta Pîşesaziyê qewimî.

Otombêla ku hatibû bombrêjkirî, Berazîliyekî Taxî û bi hejmara Mûsilê bûye.

Hêjayî gotinê ye ku teqîn ji karê xwekujiyê bi dûr bûye, ji ber ku teqîn bi kontrol ji rêya dûr hatiye encam dan.

# Li Îraqê guhartina desthilatê zûtir pêk hat



Li gorî pilana Dewletên Yekbûyî yên Amerîka û hevalbendan desthilata Îraqê dê ji 30'ê Junê pê ve ji Îraqîyan re bihata dan, bi sedema rewşa aloz û ne baş ya Îraqê, ew kare 2 rojan pêş dema diyarî kirî hate birêve birin.

Rê û resma guhertina deshilatê bi beşdariya endamên Civata Deshilata berê ya Îraqê û Berpirsyarê demî yê Îraqê Paul Birêmêr, li Bexdayê hate li darxistin.

Tê gotin ku guhertina deshilatê ya zû li ser daxwaza Wezîrê Karê Derve yê Îraqê, Huşyar Zêbarî, hatiye kirin.

# Birêve çûna konferansa: Kurd, yek netewe - çar dewlet – çi pêşrojek?



**Wezîrê Karê Dereveyî Danîmarkê yê berê û serokê Partiya Sosyal Demokrat rêzdar Mogens Lykketoft**

Kopênhag – Danmark: "Kurd çi li Danîmarkê û çi li derve niha dostên me yên nêzîk in" Serokê Partiya Sosyal Demokrata Danîmarkê û Wezîrê Karê Derve yê berê yê vî welatî ji axaftinên xwe ya destpêka konferansa: Kurd, yek netewe – çar dewlet – çi pêrojek? de got.

Bi amade bûna derdora 80 kes li nûnerên Partî û Rêxistinên Kurd yên siyasî û nedewletî (NGO) û nûnerên perlemana Danîmarkê, konferansa: Kurd, yek netew – çar dewlet – çi pêşerojek? pêk hat. Konferans bi axaftina parlemantêr Lars Krammer Mikkelsen serokê DKR ( Komîteya Kurdî – Danîmarkî bo mafê mirovan) dest pê bû û di şûn de Wezîrê Karê Derveyî Danîmarkê yê berê û serokê Partiya Sosyal Demokrat rêzdar Mogens Lykketoft di axaftina destpêkî ya xwe de li ser hewcehiya alîkariya navneteweyî ji bo çareseriya pirsa kurd axivî. Wî li beşek di axaftina xwe de got: "Kurd nimûna herî baş ya sedan sal berxwedan û xwe parastinê ne." Li ser mijara demokrasiyê Lykketoft got: "Xewn û armancên me hevbeş in. Em divêt ji bo demokrasiya navxweyî û navneteweyî xebatê bikin."

Dr. Xalid Salih mamostayê zanîngehê li Sentera lêkolîna nû ya Rojhilata Navîn li zanîngeha Başûra Danîmarkê di raporeke 40 xuleyî de ku pêşkêşî konferansê kir, li ser sinaryoyên siyasî ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd axivî. Piştre nivîskar Nina Rasmussen û mêrê wê Hjalte Tin li ser ezmûnên xwe yên sefera Kurdistanê piştî hilveşîna hikûmeta Seddam axivîn. Nina Rasmussen berê seferek bo Kurdistana Îranê kiribû û ser wê beşa Kurdistanê pirtûkek bi navê "Alene i Iran" (Tenê li Îranê) nivisandiye.

Nûnerên Hikûmeta Herêma Kurdistanê (Hewlêr û Silêmanî) rêzdaran Taha Berwarî û Ferhad Ezîz û herwisa berpirsyarê Pilatforma Kurdistanê Keya Izol û Ehmed Mihemed Çeto ji Partiya Yekîtiya Demokrata Kurd li Sûriyê ser rewşa Kurdan li Îraqê, Tirkiyê û Sûriye peyivîn.

Ji aliyê Partiya Demokrata Kurdistana Îranê ve Birêz Mecîd Heqî beşdarê konferansê bû. Di axaftina xwe de di gel rohn kirina rewşa Kurdistana Îranê dîtina hizbê bo çareseriya pirsgirêka Kurd li Îranê anî ziman. Wî di axaftina xwe de da xuya kirin ku baştirîn metod bo çareseriya pirsgirêka neteweyî di Îrana çend neteweyî de sîstemek Federalî li ser bingeha cuxrafî, neteweyî, aborî û çandî ye. Ji aliyê din ve heke hikûmeta Îranê mafê xudmuxtariyê ku dirûşma hizba me ye bo çareseriya pirsa Kurd li Îranê cî bi cî bike, Îran dê bikaribe piroseya demokratîzasyonê bi awayekî rastîn dest pê bike.

Beşa dawiya bernamê bo rapora rêxistinên nedewletî li ser rewşa mafê mirovan li Kurdistanê rawesta. Di vê beşê de: Nivîskar Beyram



**Birêz Mecîd Heqî, nûnerê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê beşdarî Konferansê bû**

Bozyel, serokê Partiya HAK-PAR li Bakura Kurdistanê li ser rewşa mafê mirovan û pirsgirêkên Kurd li Tirkiyê peyivî. Her wisa feylesof Ebdul Besît li ser rewşa mafê mirov yê Kurdan li Sûriyê û Dr. Akram Hawas li ser rewşa Kurdên Feylî axivî.

Heval Cehanbexş Xalidî ji Komeleya Aştî bo Kurdistanê li ser rewşa mafê mirovan li Kurdistana Îranê axivî. Ewî tevî îşare kirin bi birgehên distûra Îranê û yasaya qesas û hidûdê rewşa yasayî ya gelê Kurd da nîşandan û basa ew cînayetên ku Komara Îslamî derheq gelê Kurd encam daye, kir.

Konferans demjimêr 6'ê êvarê dawî pêhat. Di êvara heman rojê de beşdarên Konferansê li mêvandariya DKR'ê de beşdar bûn û nûnerên hizbê û komeleya Aştî digel beşdaran li ser rewşa Kurdan û rêxistinên Kurd li Kurdistana Îranê axivîn. Ji aliyê komîteya partiyê ya li Danîmarkê hevalan Mêhran Îbrahîmî û Seîd Sultanpûr beşdarê konferansê bûn. Konferans ji aliyê DKR û bi alîkariya Nvent vedrrende EU - Oplysning hatibû amade kirin.

*Ji malpera www.kurdistanmedia.org hatiye wergirtin.*

# Demokrasî, biha û piraktîka wê

**Beşa 5**

Kurmanc Hakkî
kurmanc@dengekurd.com

**Wîsta gel, hilbijarde û berpirsayetî**

Me di hejmara berê de got ku ev dîtinên ku daxwaza bi cî anîna wîsta gel bi awayekî kolektîv dikin bi *popolîst* tên nas kirin. Di vê beşê de em dê li ser çawanî û yasayên biryardanê ku rê didin bo bi cî anîna wista gel rawestin, paşê em dê herin ser basa pirsgirêkên pêwendîdar bi mesela wîsta gel. Hewce bi bîr anînê ye ku du (2) şiroveyên ji hev cuda ji popolîsmê de hene. Nêzîk bûna me bi popolîsmê bi awayekî individualîstî wate giranîdan bi wîsta kit kite endamên civakê ye. Em bo wê yekê piştgirêdayî bi teoriyên modern yên aboriya civaka asayiş in (walfare economics). Armanca destpêkiya aboriya civaka asayiş ew e ku navendên biryardanan bi şêweyekê bên saz kirin ku bi awayekî herî baş wîsta endamên civakê cî bi cî bike. Nêzî bûna duyem bo ser mijara popolîsmê ew e ku netewe dikaribe yek wîst hebe, ku pêk hatiye ji wîsta hevbeşa gel ji bo hêviyeke hevbeş.

Helbijara takekes (preference) pêkhatiye ji wan biha û cîhanbîniyana yên ku mirov ji bo jiyan û ramanên xwe hildibijêre. Em heke bixwazibin wîstên hemû endamên civakê di demokrasiyê de cî be cî bikin, em dê hemberî du (2) pirsên giring bibin: (i) Diviya bersîva kîjan pirsê bi awayekî kolektîv bê dan û kîjan pirsgirêkek divêt ji bo biryardana takekes û aboriya azad bimîne? (ii) Ji bona bersîvdana wîsta takekes çawa biryar divêt bên dan?

Ji bo bersiva pirsa yekem (i) weke xuya ye nêzî bûn bi awaya li rêya mikanîzma bazarî hêsantir be hetanî biryardana kolektîv. Di nêzîk bûna bazarî ya modêrn de mebesta sereke ewa ye ku berhem û kalayên bazarê bi awayekî bên saz kirin ku bersîva wîsta her kiryarekê bide. Ji bo wê yekê şirket û bingehên bazirganiyê beşek bi navê bazar peyda kirinê (bazar yabî) heye ku erka wê lêkolîn li ser wîsta kiryaran û pêşniyaza sazkirina berheman li gor wîsta muşteriyan e. Lê di ramyariyê de em dikarin basa biryarên kolektîv (giştgir) bikin. Ji ber ku biryarên siyasî yên dewletê pêwendî bi hemû civakê re heye û ev biryarana bi navê hemû civakê tên pejrandin. Ji ber vê yekê di sîstemên demokratîk de divêt ku bê rohn kirin, çi biryar yên kolektîv û dewletî ne û çi biryarek ji bo bazarê dê bimîne. Pirsek giring di vê barê de ewa ye ku çawa dewlet dê bikaribe mewdaya navbera dahatê (bilintirîn û nizimtirîn dahat) kontrol bike û sîstemekê avedan bike ku dewlemendî û feqîrî bi awayekî nebe ku civak bi awayekî neadilane bi dewlemend û feqîr bê dabeş kirin.

Hilbijartina Sosyalîzma demokratîk wek dirûşma pêşeroja Partiya Demokrata Kurdistana Îranê di rastî de bersîvdan bi wê pirsê ye. Giraniya ku li sosyalîzma demokratîk de hatiye dan bi bihayên demokratîk û her wisa beşdariya endamên civakê bi awayekî îroyîn û nûjen dê bikare bibe rêniwênê xelkê Kurd ji bo civaka rehetî (Li ser vê mijarê mêzeyî kurtebasêk le ser sosyalîzm, nivîsîna Dr. Ebdulrahman Qasimlo li weşanên PDKI bikin). Alîgirên civakên tenahî di welatên Rojava de di destpêka 1971'an de teoriyên dewleta rehetî (walfare state) û her wisa dewletên biçûk pêk anîn. Ji wana em dikarin basa John Rawslîn û feylesofê Emerîkî Robert Nozick bikin. Li gor Robert Nozick ku bi bavê teoriya dewletên biçûk tê naskirin erka dewleta navendî tenê parastina tenahiya şarovendan (hevwelatiyan) û xurt kirina hevgirtina navbera şarovendan e.

Cudahiya navbera biryarên demokratîk û biryarên bi awayî bazarî – ku li ser bingeha wîsta takekes hatiye damezirandin – her wisa di şêweya ragehandin û çawaniya dana zanyariyê bi mirovan de ye. Bingeha nêzîk bûna bazarî bi mirov hewcehiya aborî û îdealên aborî yên mirov e. Ew hewcehiyana bi şêweya hels û kewta (livlivîn) mirovan di bazarê de tên pîvan. Bi watayeke din, rabûn û rûniştina mirov çawa ye dema ku ew kiryar e, xwedî kar e, karker, karmend yan sermayedar e? Di demokrasiyê de bingehên biryarê li ser hinek peymanên hevbeş in weke: beşdarî li hilbijartinan, xwepêşandan û beşdarî li giftûgoyên siyasî û hwd ..., tê ava kirin.

Di beşa duyem (ii)de pîvana wîsta gel li gor teoriyan li ser encama biryarên kolektîv e. Bi wateyeke din bihaya demokrasiyê li wê nêzî bûnê de di encama biryaran de tê dîtin û ewa ye ku biryarên giştgir çiqas bersîva wîsta endamên civakê didet. Li gor wê nêzî bûnê erka destpêkî ya demokrasiyê pêk anîna mikanîzmekê ye ji bo biryardanê ku biryarên giştî bersîva wîsta takekes bi awayekî herî baş bidet.

Bersîvdan bi wîstên takekes bi du (2) şêweyan armancek demokratîk e. Yekem: Demokrasiya li ser vê bingehê wê derfetê dide endamên civakê ku wek tak biryrê li ser jiyana xwe bide û biha û nirxên jiyana xwe di nav civakê de hilbijêre û li ser vê binghê biryarê bide, çi biryareke civakî bersîva hewcehiya xwe bizanibit. Armanca han bersîva merca otonomiya takekesî di demokrasiyê de dide. Duyem: Ji ber ku îdeal û hilbijartinên takên di nav civakê de ji bo demokrasiyê giring in, bi vî awayî armanca wekheviya siyasî tê cî bi cî kirin.

Yek ji taybetmendiyên giring →

# Neyariya Komara Îslamî bi gelê Kurd re, neyariyeke Felsefî û îdeolojîk e

Bavê Hejar

Li roja 14'ê Aprila 2004'an, 12 serbazên Kurd yên ku di xizmeta Komara Îslamî de bûn li binkeya leşkerî ya Somarê li devera Pawê ser nimêjê hatin kuştin. Di nûçeyên Îranê de bi awayekî herî kêm basa wê meselê hat kirin. Ragehandinên giştî yên Komara Îslamî basa wê yekê nekirin û li vê mirov kujiyê mîna av wexwarinê derbas bûn. Gelo çima xortên neteweya me dikevin ber êrîşa çekdarên Komara Îslamî û kesek jî berevaniyê ji wana nake? Çima li serbazxanên Îranê cudahî di navbera Kurdan û yên din de tê danîn?

Distûra her welatekî pileya nirx danîna hikûmeta wî welatî ji bo buhayên mirovanî derdixe holê. Lewma ji bo têgehîştin ji sedema êrîşa ser serbazên Kurd, divêt em mêzeyî yasayên Komara Îslamî bikin û nirxa mirovaniyê eger hebe di nav dêrên tejî li dijhevî distûra Komara Îslamî peyda bikin. Di welatên ku li ser bingeha Demokrasiyê hatine damezrandin, bê yasayiya dewletdarên welatê wana li rêya bingehên yasayî û komeleyên ne dewletî tên eşkere kirin û dikevin ber mehkemê. Distûra Komara Îslamî, ku ew rejîm li ser bingeha wê hatiye damezrandin tejî ye ji cudahî danan di navbera şarowendên (şehrwend) Îranî nemaze netewe û kêmaniyên olî yên Îranê.

Rejîma Îranê li gor birgehên (madde) 5., 57 û 107 distûra Îranê li ser bingeha "Wilayeta Mutleqa Feqîh" hatiye damezrandin ku li gor birgeha 12 ya wê yasayê divêt mêrekî ayînî ser bi mesebê fermî yê welatê Îranê wate Şiiyê 12 Îmamî be. Li gor wê yasayê rêber, serok komar, wezîr û serokê Parlemana Îrana Îslamî divêt mêrên ser bi ayîna fermî ya Îranê bin.

Li Îranê zêdeyî 10 milyon Kurd dijîn ku piraniya wana Sunnî ne, ji bilî wê zêdeyî ji 30% rûniştiwanên Îranê mesebê wana Sunnî ye ku li gor wê yasayê şarowendên pile du (2) tên hesibandin. Jin ku nîviya civaka Îranê pêk tînin xwediyê biçûktirîn beşê ne ji deshilata Îranê û li gor distûra bingehîn, jinan mafê hakimiyeta siyasî û civakî tuneye.

Dema mirov ji nêzîk ve mêzeyî yasayên cezayî yên Îranê dike, vê demê hovîtiya rejîmê li hemberî gelên Îranê û xasmayî hêzên opozisyonê baştir nas dike. Li gor birgehên 198 – 211 a yasaya "Hudûd û Qesas" di Îranê de endam yan alîgirên ew hêzên ku dijî Komara Îslamî çalakiyên siyasî yan çekdarî dikin, wate hêzên opozisyon û demokrat bi "muhareb" (Dujminê xwedê) û "Mufsidulfîl erz" (Fitneya ser erdê) tên nas kirin ku sizayê wan kesana pêkhatiye ji: 1. Kuştin, 2. Li dar vekirin 3. Birîna destê rast û lingê çepê 4. dûr xistin (tebîd).

Li midehê dûr xistinê, sizadayî mafê pêwendî girtin bi tu kesekê ve nine û ew dê di midehê 3 rojan de çend caran bi awayekî ser û bin (serazîr) bê li dar dan. Heke hetanî 3 rojan ew nemir ew divêt sizayê xwe yê dûr xistinê derbas bike û



heke mir jî sizayê xwe bi natewawî cîh hêla ye.

Ew kiryarên han serekanî ji felsefa kevnar ya îdeolojiya Komara Îslamî digirin ku dîroka wana ve digere bo 1400 salan berê, dema ku berberiyet bi watayekî reha (mutleq) li ser mejiyê mirovan hakim bû.

Yasaya *Hudûd û Qesas* bi awayekî rohn siyasetên Komara Îslamî derheqî xelkê Kurdistanê nîşan dide. Ji ber ku ji Felsefeya Komara Îslamiya Îranê de hemû xelkê Kurdistanê *Muharib* û dijminê Xwedê ne û mafê wana kuştin û birîn e. Wêneya herî eşkere ya wê jî fermana cehada Xumeynî di 16'ê Agosta 1979'an de ye .

Di midehê sala derbas bûyî, sala 2003'yê Zayînî de Îran dîv Çînê welatê duyem bûye ku hejmara îdamên aşkira ji hemû deran zêdetir bûye. Ji bilî wê yekê bi dehan ji xelkê bêberevan û zîndaniyên siyasî xasmayî li Kurdistanê bi awayekî nepenî hatin kuştin û îdam kirin ku bîr û rayên cîhanê jê nehatin haydar kirin.

Di destpêka sala 2004'an hetanî îro bêtir ji 40 kes ji xelkê Rojhilata Kurdistanê ji aliyê Pasdar û Besîciyên Komara Îslamî hatin kuştin û hejmareke zor jî hatin birîndar kirin. Bi şahiya xelkê Kurdistanê bi sedema ragihandina distûra demî ya Îraqê di roja 08.03.2004an û her wisa li ahengên Newrozê bêtir ji 500 kesan ji xelkê Kurdistanê li bajarên Urmiye, Sine, Mihabad, Bane, Serdeşt, Merîwan, Pawe û Kirmanşahê hatin girtin ku çarenivîsa bêtir ji 130 kesan hîna nexuya ye.

Herwek di ragihandina Deftera Siyasî ya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê de li roja 14.04 hatiye xuyanî kirin, 7 kes ji endamên partiyê ku di roja 19.10.1996'ê ji aliyê Bizava Îslamî hatibûn revandina, her wî demî paşî kişandina eşkence û azareke zor 6 kes ji wana hatin îdam kirin. Îdama wan şehîdan, heft sal piştî bûyera revandin wan û li encama guşareke navneteweyî li ser Komara Îslamî tê eşkere kirin, ku hîna cenazê wana bi malbatên wan nehatine dayîn.

Ji bilî wan kiryarên cinayetkarî derheq xelkê bêberevan yê Kurdistanê, Komara Îslamî dest bi hilweşandina bingehên aborî û sirûştî yên Kurdistanê kiriye ku bi awayekî pir xeter dê bibe sedema têkçûna demografiya Kurdistanê û guherîna rûçikê cuxrafî yên Kurdistanê. Pilana saz kirina Bendava çemê Berandêz û Silîvana û saz kirina rêya Urmiyê bo Mirgewer – Tergewer, mînakên biçûk yên pîlanên Komara Îslamî ne ku dixwazin bi awayekî sîstematîk xelkê Kurd ji axa Kurdistanê dûr bixin.

Di rewşeke wiha de ye ku divêt rewşenbîr, saziyên nedewletî (NGO) û siyasî yên Kurdistanê bi awayekî hesastir rastiyên Kurdistana Îranê mêze bikin û *jenosayda sipî ya* Komara Îslamî a Îranê derheq bi xelkê Kurd bidin aşkere kirin.

# Bi hinceta 24'mîn salvegera damezrandina Radyo Dengê Kurdistana Îranê

**Perwîz Meraxeyî**

Roja 27'ê Cozerdana îsal Radyo Dengê Kurdistana Îranê, piştî derbas kirina 24 sal ji temenê tejî kar û tekoşîna dilsojaneye xwe, pêyê xwe davêje 25'mîn sala temenê xwe. 24 sal karê dilsojane û bêrawestiyan, ev radyoye kiriye bi "awêneya Balaniwêna" bûyerên tevgera gelê Kurd li Kurdistana Îranê.

Piştî serkevtina serhildana gelên Îranê bi dijî rejîma Paşayetiyê, deskevtên şoreşê ji aliyê hinek Melayên kevneşop ve hatine zevt kirin û keys û derfeta çalakiyên eşkereye Partî û Rêxistinên siyasî hate qedexe kirin û vê ji weşana belavok û têkiliyên rasteraste wan bi xelkê re hate girtin. Ji aliyê din ve jî rêberiya partiyê dizanî ku parek berbiçav ji xelkê Kurdistanê, ne xwendewar in û yan jî kêm xwende ne û hemû jî nikarin wekhev mifahê ji belavokên Partiyê werbigirin, Û ji hemûyan giringtir rejîma taze bi deshilat gihîştî êrîşên leşkeriye xwe bi dijî gelê Kurd û PDK Îranê dest pê kiribû.

Hemû evane bibûne sedema wê ku diviya pêvajoya bûyer, helwest û siyasetên PDK Îrenê di dema xwe û bi terzê rojane bi agehdariya xelkê bi gihîştiba. Lewma ew tiştên ku me îşare pê kirin, hewcehiya ava kirina radyoyeke serbixwe û xelkî anî holê ku aqibetê bi cehd û tekoşîna rêberiya Partiyê û bitaybet rênimayên şehîd Dr. Qasimloyê mezin, Radyo dengê Kurdistana Îranê bi îmkanatekî kêm û destpêkî, bi peyama rêberê şehîd Dr. Qasimlo roja 27'ê Cozerdana sala 1359'e Rojî (1981) dest bi weşana programên xwe kir.

Radyo Dengê Kurdistana Îranê, dengê heqbêjiya gelê Kurd û dengê berxwedaniya hêza şoreşvane Pêşmerge, zor zû karî ser li hemû cih û avahiyekê derbîne û bibe xweştiviye alî û tevahiya xelkê Kurdistana Îranê û biçûk û mezin mifahê jê werbigirin.

Hejî gotinê ye ku Radyo Dengê Kurdistana Îranê, di heyamê 24 sal ji temenê xwe de, rol û bandoreke haşa hilnegir li ser tevgera gelê me li Kurdistana Îranê de hebûye. Bo nimûne bi zimaneke sade û xurî siyasetên PDK Îranê bo xelkê şirove kiriye û xudîk û berjenga xebat û berxwedaniya hêza qehremane Pêşemregan bûye, cinayet û komployên cur bi cure kirêgirtiyên rejîmê şermezar û mehkûm kiriye û bi emanet û rastbêjiyeke tewaw ve qala bûyerên Kurdistanê kiriye û rê nîşanderê civatên xelkê Kurdistana Îranê bi dijî rejîma dijî geliye Melayan bûye.

Hemû vane û zaf taybetmendiyên din jî bûne sebeba vê çendê ku Komara Îslamî, bo bê deng kirina û temirandina wî dengê zelal çi ji dest bihê, bike.

Mixabin cuda ji heyamê 5 heyvan ku Radyo Dengê Kurdistana Îranê ji sala 1374'e Rojî (1995) hate daxistin, lê bi keyfxweşî ve ev denge di hisara komployên cur bi cure rejîmê de û di dema cih guhertin û di bin bombebaran û reşaşên dijmin de, dengê zelale xwe bilindtir kiriye û ji kar û xebata xwe nesekiniye 24 sal xebata bêrawestiyane vê radyoyê li tevgera rizgarîxwaz a gelê Kurd, wisan kiriye ku heta dijmin jî nekare haşayê ji hitbar û rastbêjiya wê bike.

Radyo Dengê Kurdistana Îranê, 24'mîn salvegera ava bûna xwe di demekê de pîroz dike ku pêvajoya bûyeran bileziyek xurtir bixwe we girtine û her gav çavnihêriya guhertinên nû tê kirin. Lewma ev denge zêdetir ji carên berê seh bi berpirsayetî û erkên girane ser milê xwe dike û arxayîn e ku heta gihîştin bi serkevtina yekcarî, xebata pîroze xwe didomîne. Hêvîxwaz e jî ku bi wan zûyane mizgîniya serbestiya gelê Kurd bi guhdarên birêz û biemege xwe bide.

Seba 27'ê Cozerdanê, 24'mîn salvegera damezirandina Radyo Dengê Kurdistana Îranê, em pîrozbahiyê ji têkoşerên PDK Îranê û birêveber û xebatkarên vê radyoyê û hemû guhdarên birêz û xelkê şoreşvane Kurdistanê dikin.

**Têdîtin:**

**Ev gotare di roja 27.03.1382 (16.06.2004)'an de li Radyo Dengê Kurdistana Îranê hate bilav kirin.**

# Demokrasî, biha û piraktîka wê

## Beşa 5

Dom: R. 6

yên demokrasiyê ev e ku, biryarên bi komel hatî dayîn, bikaribe bi awayekî berfireh bersîva wîsta takekes jî bidet. Em dikarin wê yekê bi *berpirsayetî* di biryarên demokratîk de navdêr bikin. Berpirsyarî ( responsiblility) bi wateya vê ye ku biryarên pêwendîdar bi gişt, weke danîna yasa û şêweya baca dewletî (malyat) bi awayekî giştî bersîva hewcehî û nirx û bihayên takê bidet. Alîgirên wîsta gel giraniyê didin ser berpirsyariyê, ji ber ku biryarên giştî divêt bersîva wîsta takî/ê bidet.

Hinek teorîsiyenên demokrasiyê li ser vê bawerê ne ku berpirsayetî merca herî bingehîn ya diyarî kirina civaka demokratîk e. Lê di piratîkê de û li beşên pêşîn jî dê bê xuyanî kirin ku berpirsayetî li hemû civakên demokratîk de nayê pejrandin û herwisa li gor demokrasiyên welatan pirsa berpirsayetiyê bi awayên cuda hatiye şirove kirin.

Her çawa be li demokrasiya ku wîsta me ye, mesele berçav girtina wîsta takekes û otonomiya beşek giring ji wê ye. Ji ber ku li gor baweriyên me mirov divêt li ser çarenivîsa xwe hakim be. Berçav girtina wîsta takekes cudahiya demokrasî û dîktatoriyê jî nîşan dide. Di sîstemekê de ku li ser bingeha dîktatoriyê hatibe damezrandin heke bihê û wîsta takekes hatibe berçav girtin, divêt bêjin ku ewana berî her tiştekî şans (bext) hene hetanî deshilat. Jiber ku mirov di sîstemeka dîktatorî de tu mafek ji bo diyarî kirina çarenivîsa xwe nîne. Lewma her wek şehîd Dr. Qasimlo bi awayekî sipehî gotiye: "Xirabtirîn demokrasî ji baştirîn dîktatoriyê baştir e."

Dirêjî heye.

## Midûrê berpirsyar yê heftênameya Peyama Gel li Kurdistanê hate girtin

Li gor agahiya Celal Qewamî endamê şêwra sernivîskariya heftênameya "Peyamê Merdom" (**Peyama Gel**), Mihemmed Sidîq Kebûdwend Xwedî îmtiyaz û midûrê berpirsyar yê heftînameya Peyama xelkê Kurdistanê roja sêşemî 26.03.1383'ê Rojî (15.06.2004)'an bo şaxeya yekem a dadgeha Giştî ya Sine hatiye gazî kirin û piştî ragihandina sûçên wî, hatiye girtin. Navbirî bi guneha teşwîq kirina raya giştî, basa kirin ji pirsên neteweyî – nijadî bi armanca cuda bûnê, xistine rojeva pirsgirêkên olî bi merema têkdana civakê, çap û weşndina gotar û wêneyên Qazî Mihemed û … hatiye girtin.

hêjayî gotinê ye ku heftenameya xwediyê peyama gele ku naverokeke siyasî, aborî, civakî û çandî ye, di çar welayeta Kirmaşan, Azerbaycana Rojava, Îlam û Kurdistanê û piraniya bajarê Îranê ku Kurd têde dijîn, tê weşandin û ji serê îsal û vir de, li bajarê Sinê derdiçe.

Tê gotin ku Mihemmed Sidîq Kebudvend, çend rojan berî niha bi dayîna kefaletê re serbest hate berdan. Hate diyar kirin ku bedêla kefaleta serbest berdana Kebudvend, 70 milyon Qiran (8 hezar û 100 dolar) e.

## Bi sedema li hevketina Otombêlan li Îranê: 100 kes mirin û 116 kes jî birînadar bûn



Di encama bûyera li hevdana 12 Otomêblên Tirêylî û Otobusên misafirber de û agir girtina wan di roja pênşemî 1383.04.04 (24.06.2004)'an de nêzîk bi 100 kesî jiyana xwe ji dest dan û bêtir ji 116 kes jî birîndar bûn. Bûyer di rêya Bem- Zahidan, ser bi Welayeta Sîstan û Belûçistanê rû daye. Li gor gotina polîs û berpirsyarên herêmê dezgeheke Otombêla Tirêlî ya 18 çerx û hilgirê 18 hezar lîtir şewatê li nêzîk pirêzgeh (cihê kontirola Otombêlan ji aliyê hêzên leşkerî)a "Nusret Abad"ê bi 11 Otombêlên Tirêlî û Otobus ku xelk tê de bûn qewimî.

Ev bûyera di halekî de rû dide ku ji gor encama lêkolînekê, Îran bo lihevketina û gorî bûna mirovan di nava welatên cîhanê de yekem e ku tenê di sala derbas bûyî a Zayînî de pitir ji 21 hezar kesî jiyana xwe di rêyên Îranê de ji dest dane û bi hezan kes jî birîndar bûne.

## Urmiye: Berpirsyarê belavoka Kurdî ya Zîlan ji aliyê komîteya zêrevanî kirin a çapemeniyên Zanîngehê ve hate gazî kirin

Li bajarê Urmiyê berpirsyarê belavoka Kurdî a bi navê **Zîlan** seba li berçav negirtina metoda weşana zanîngeha Urmiyê di warê çap nekirina zêdetir 20 ji sedêye mijaran bi zimanê Farsî û weşana babetan bi tîpên latînî, bo rohn kirina têdîtin û nerazî bûna komîteya zêrevaniya belavokên zanîngehê hate bang kirin. Armanca bingehîn pêk anîna asteng û kospan bo daxistina belavoka Kurdî – Farsî a Zîlan e. Tê zanîn ku di hejmara dawî ya Zîlanê de gotarek li ser hewce dariya Kurdan bi nivîsîn û xwendin bi tîpên Latînî tekez hatiye kirin.

## Meşa karkeran li Urmiyê

Bi hezaran kes ji karkerên bajarê Urmiyê, şino, Pîranşar û Serdeştê roja şemî 16'ê Cozerdana sala 1383'e Rojî ku di kûrexaneyên cur bi cur ên welayeta Azerbaycana Rojava de dixebitin, li hember deriyê îdareya Kar a Urmiyê meşa li darxistin. Sedma wê meş nerazî bûnê, balkişandin li ser rewşa karkeran, paşketina heqdestê wan ji aliyê xwediyê kûrexaneyan bû ku piştî çend caran gazinde û daxwazkariyan, bê bersîv mabûn.

# Leyla Zana wek stêreke geşe ku her tim diçilvile

**Aware Celalî**

Navê Leyla Zana wek jineke şoreşvana kurd ne tenê di nava Kurdan de, belkî di astê Rojhilata Navîn û cîhanê de jî navekî diyar û naskirî ye. Wê di çend salên derbas bûyî de bi tekoşîna azadîxwazî ji bo misoger bûna mafê rewa û berheq yê gelê xwe, dewleta dijberî Kurdan ya Tirkiyê hewrîşê alozî û ser êşaneke zaf kir. Leyla û hevalên wê Xetîb Dîcle, Orhan Doxan û Selîm Sadak ku Kurd û endamên Parlemanê bûn piştî bihorandina 10 sal ji jiyê tijî serbilindî û jiyana êxsîrî û pir ji êş û azar, roja çarşemiyê 20.03.1383'ê Rojî (09.06.2004) di girtîgehên rejîma Tirkiyê de vegeryane hembêza gel û serbest hatine berdan.

Leyla di sala 1961'an li yek ji gundên Amed (Diyarbekir)a Kurdistana Tirkiyê hate dinê. Tu kesî bîr ji wê nedikir ku rojek ji rojan ew keça gundî dê bibe ev şêrejina û dewleta Tirk tûşî wan hemû gêre û kêşanan bike û bala hemû cîhanê bo aliyê Tirkiyê rabikêşe. Cudahiya di navbera Leyla û keçên hev gundiyên wê de eve bû ku Leyla bi çi terzekî ser ji bo tiradîsyon û rewişt û tîtalên kevn û çirmisanker ya civaka Kurdî nediçemand, lê mixabin di jiyê 14 saliyê de piştî berxwedaniyeke zaf li hemberî malbata xwe bi çok de hat û di bin zext û givaşa bab û kes û karên xwe de bê pirs û ra bi Kur Mamê wê Mehdî Zana ku cudahiya 20 salan di navbera temenê van de hebû hate mare kirin. Mehdî yek ji siyasetvanên Kurd bû ku di hilbijartina şaredariya 1977'an de bû bi serokê şaredariya bajarê Amedê. Piştî bihorandina 5 salan li ser jiyana hevpar ya wan, leşkerên Tirik li encama kudetayeke serbazî di 12'ê Îlona 1980' yî de êrîş kirine ser Kurdan û Mehdî jî yek ji wan girtiyan bû ku bi tometa têkilî tevî girûpên awarte (PKK) bi 30 salan hat ceza dan, lê piştî derbasbûna 9 salan ji vê qasa cezayê, serbest hat berdan.

Bê şik hevjîniya Mehdî tevî Leylayê wisan kir ku Leyla zêdetir têkilî siyasetê be, lewma piştî zîndanî bûna Mehdî guhartineke zaf li ser jiyana Leylayê re hat û kete bin barê jiyaneke giran û dijwar de, xwedî kirina her du zarokan û şûn de çûna pey Mehdî û nemaze ji wê delîvê mifah wergirt û xwe hînî zimanê Tirkî kir û xwendina xwe ya destpêkî û navîn û paşnavendî dawî anî. Hêj bi wê jî razî nedibû û piraniya dema xwe mijûlî xwandinê dikir, lewma hinde pê neçû ku qonaxa bi siyasî bûna Leylayê dest pê kir û bi çalakiyên xwe yên siyasî û civakî wisan kir ku ji aliyê rêxistina mafê mirov û jinan ve nav û deng peyda kir û bû bi berdevkê jinan û zaf caran di medyayan de dipeyîvî, herwiha berpirsyariya rojnameya **"Yeniulke"**'yê jî li Amedê dikir.

Leylaya delal bi sedema domandina van çalakî û tekoşînên ku dimeşand, bo yekem car di sala 1988'an de ku hêj Mehdî di girtîgehê de bû, bo heyamê 59 rojan ji aliyê celadên Tirik ve hat girtin û piştî êş û azar û îşkenceyeke zaf serbest hat berdan û berevajî nêrîna Tirkan tekoşîna xwe ya demokrasiyê û



çalakiyên xwe yên siyasî - kulturî xurtir kir. Hetanî sala 1991'an di hilbijartina Parlemana Tirkiyê de li ser lîsteya Partiya Sosyal Demokrat a Gel xwe berendam kir û karî wek yekem jina Kurd serkevtinê bi dest bîne û bibe endamê Parlemana Tirkiyê. Lê bi sedema wê ku bi cil û bergên xemlandî yên Kurdî bi rengên **Kesk** û **Sor** û **Zer** hate telara Parlemanê û di ahenga sûnd xwarinê de bi Kurdî axivî û her piştî wê axavtinê jî çend Parlementerên din yên Kurd jî piştgîriya xwe ji wê helwestê dane eyan kirinê. Bê şik ew helwesta Leylayê û hevalên wê ku reng û dengê rastîn yê gelê Kurd biribûne nava Parlemanê, weke teqîna bombeke demokrasiyê bû di nava Parleman û welatê Tirkiyê de, metodeke nû û bi bandor bû di tekoşîna demokrasî û xwastek û mafên gel û azadiya çand û zimên de, ku dengwedaneke zor di astê neteweyî û navneteweyî de hebû, lewma di bin givaşa şovinîstên Tirk û serokê Partiya Sosyal Demokrat a Gel (Erdal Îneno) de Leyla û hevalên wê neçar bûn dest ji Partiyê berbidin û tev Partiya Demokrasiyê (DEP)'ê bûn û xwe bi nûnerê vê Partiyê dan naskirin. Bi vê bizav û kiryarê giranî û navdengiyeke zêdetir bi kesayetiya wê hat bexşîn û piştre di encama seferekê de bo Ewropa û Emerîka û Başûrê Kurdistanê jî nav û dengekî pitir û zaf heval û piştevan jî ji xwe re peyda kirin. Lewma ew helwest û liv û çalakiyên Leyla û hevalên wê hikûmeta Tirk tirsand û di cehdekê de bo temirandina çalakiyên demokrasiyê di 4'ê Marcha 1994'an de Leyla û çend Parlementerên din bi tometa cudaxwazî û tevdana êminahiya neteweî a Tirkiyê û pêwendî bi rêxistina PKK'ê ve hatin dest bi ser kirin û bi 15 salan hatin mehkûm kirin.

Leyla Zanaya delal û aştîxwaz di yekem mehkemeya xwe de li 5'ê Agusta 1994'an de, cesûrane û netirsane berevanî ji xwe kir û wiha got: "Ez yekemîn jina kurd im ku ji bo Parlemanê têm hilbijartin û niha divê ez bitirsim ku ji ber bawerî yên xwe, ji ber ku min bo azadî, demokrasî û çespandina pêwîst ya hebûna gelê xwe kar kir, cezayê mehkûm bûnê distînim. Hikûmetên Rojava careke din ji ber berjewendiyên xwe yên bazirganî bi Tirkiyeyê re bêdeng dimînin, mîna ku ew berî niha li hemberî Îraqê jî bi heman sedeman bêdeng man, dema ku Kurd li wir dihatin qir kirin, lê ez li hêviya piştevaniya hevalên xwe yên Parlemanter, paşvatên mafê bîr derbirînê û xwûşkên xwe di tevgera Jinên cîhanê de me".

Carek din Dadgeha Ewlekarî ya Dewletê di 8'ê Decembera 1996'an de derheq doza Leyla û hevalên wê civiya û piştî nirxandin û berhevdanan cezayê 15 salan bo her yek ji van ragihand.

Hewce ye were gotin ku di wê midehê ku Leyla di girtîgehê de bû, guhertina nameyan tevî çend kesayetiyên siyasî û navdar yên cîhanî (**Daniyêl Mîtran**, **Bîl Kilînton**, **Kilodiyo Rot**, **Şîrîn**

# Leyla Zana wek stêreke geşe ku her tim diçilvile

Dom: R. 10

**Îbadî** û ...) kiriye. Bîl Kilînton Serokê wê demê yê Amerîka di seredanekê bo Parlemana Tirkiyê li sala 1999'an, di gotara xwe de heft caran îşare bi navê Leylayê dike û dibêje: **"Leyla Zanayê pirek ber bi aştiyê çê kir"**. Her wiha Klodiyo Rot, Serokê Feraksyona Kesan di Parlemana Ewropayê de di nameyekê de bo Leylayê dinivîse: "Ez ji te hîn bûm ku hêz û egîdî çiye". Her wiha parêzera Îranî, Şîrîn Ebadî wergirê Xelata Nobel ya Aştiya îsal dibêje: "Min basê berxwedanî û jêhatî bûna wê zor bihîstiye, ew xatûneke netirs, egîd, şoreşvan û ew şêrejina aştiyê ye".

Hêjayî gotinê ye ku Leyla Zana di heyamê binçav kirin û girtina xwe de jî çend xelatên bi nav û deng yên cîhanî jî wergirtine, wek: **Xelata Aştiyê ya Dezgeha Raftoy a Norwejê (1994)**, **Xelata Saxarof a Parlemana Ewropayê (1990)**, **Xelatê Mafê Mirovan a Valdos a Îtalyayê (1996)**, **Xelata Mafê Mirovan a bajarê Axin a Elmanyayê (1996)** û di sala 1998'an de bi hevwelatiya "îftixarî"ya bajarê Romayê hat naskirin. Her wiha yekemîn Kurd e ku piştî şehîd Dr. Qasimlo bo Xelata Nobel a Aştiyê çend caran hatiye berendam kirin, lê bi sedemên siyasî hêj ev xelata jêre nehatiye dayîn.

Hikûmeta Tirkiyeyê zaf caran ji ber ew zext û givaşên ku ji aliyê bizav û tevgerên azadîxwaz ên jinan, mafê mirovan dihate ser, û rewşa saxlemiya Leylayê jî baş nebû, dixwest li ser vê bingehê azad bike, lê berevajî vê nêrînê, Leyla Zana tu car razî nebû ku nesaxî û rewşa nebaş ya saxlemiya wê bibe bi sedema serbest beredana wê û veqetiyan ji hevalên xwe. Leyla Zana her tim li ser vê yekê cehd dikir ku ew û hevalên wê û Kurdên Amedê xwedî yek doz in û mîna hestî û goşt bi hev ve zeliqîne û ji hev naqetin.

Şêrejina Kurd, Leyla Zana derheq mafê jinan û rewşa jinan wiha dihizire ku pirsa jinê û mafê jinan girêdayî bi pirsgirêka neteweyî ve ye û weke jinekê azadiya xwe bi azadiya welatê xwe girê dide û li ser vê bawerê ye ku hetanî gelê wê bindest be, jina Kurd jî dê her wisa bindest bimîne.

Belê ew hemû helwest û birêvebirina serkevtî ya erkan û nêrîn û hizrînên ku hin ji wan me îşare pê kirin, eyankerê jêhatî bûn û mezinahiya kesayetiya Leylaya welatparêz û demokrasîxwaz in. Lewma tê nihêrîn û xuya kirin ku piştî azad bûna Leylayê û hevalên wê liv û çalakiyên siyasî û civakî pêvajoyeke din bi xwe bigirin û qonaxeke nû di jiyana siyasî û civakî û azadî û demokrasiyê de bo gelê Kurd li Bakura Kurdistanê bîne rojevê.

**Jêder:**
**Heftenameya Hawlatî**
**Heftenameya Cemawer**

# Azad bûna 4 Perlemanterên Kurd li Tirkiyê

**Amadekar: Bozê Sîna**



Her 4 Perlemanterên Kurd yên Partiya Demokrasiyê (DEP)'ê ku bi 15 salan cezayê girtinê hatibûn mehkûm kirin, roja çarşemiyê 20.03.1383'ê Rojî (09.06.2004) serbest hatin berdan. Biryara berdana Lelyal Zana, Xetîp Dîcle, Selîm Sadak û Orhan Doxan ji hêla daîreya 9'mîn ya Dadgeha bilind ya Enqereyê hate dan. Parlementêrên Kurd Leyla Zana û hevalên wê piştî ku di sala 1990'î de bo Parlemanê hatin hilbijartin, bi sûça berevanî kirin ji maf û daxwaziyên gelê Kurd di Kurdistana Tirkiyê de hatibûn girtin. Wan ji bo demokrasî, wekhevî û parastina mafê Mirovan xebat dikirin.

Piştî ku biryara serbest berdana Leyla Zana, Hatîp Dîcle, Selîm Sadak û Orhan Doxan hate bihîstin, gelek nûnerên partiyên siyasî, parêzvanên mafê Mirovan û rêxistinên sivîl bo pêşwaziyê li pêşiya girtîgeha Navendî ya Enqereyê ku ew 4 Perlemanterên Kurd tê de bûn, amade bûn û bi germî pêşwazî li wan kirin. Her wiha ji bo azad bûna Perlemantarên Kurd li piraniya bajarên Kurdistana Tirkiyê jî rê û resm û cejnên pîrozbahî û kêfxweşiyê hatin lidarxistin.

Piştî ku Leyla Zana û hevalên wê hatine berdan, di Navvenda Giştî ya DEHAP'ê li Enqereyê, bi navê wan ve jî daxuyaniyek da çapemeniyê. Leyla Zana da zanîn ku dê xebat û tekoşîna wan a ji bo biratiyê bê navbir didome.

Perlementera DEP'ê Leyla Zana, di axaftina xwe de destnîşan kir ku piştî pêvajoyeke dirêj a bi êş ew bi gel re ne û wiha got: "Piştî demeke dirêj a bi êş, pirsgirêk û ew qas jî bi jan, em îro dîsa bi hev re ne. Me di vê rêyê de, bi hevre gelek êş kişand. Gelek ji we rojnamevanan jî di vê pêvajoya têkilîdarî mijara me hatin rexnekirin, hatin binçavkirin, çavtirsandin û hatin pesinandin. Lê em niha dîsa bi hev re ne û ez vê yekê niha wekî demeke nû dinirxînim. Em dikarin wekî Kurd, Tirk, çerkez û dewlemendiyên din ên vî welatî, ji bo aştî û biratiyê bi hev re gelek tiştan bikin."

Piştî daxuyaniyê, Zana, pirsên rojnamevanan bersîv ned û got: "Em niha gelek westiyayî ne û nikarin bersîva pirsên we bidin. Divê em pêşî bêhna xwe vedin. Piştre emê bi hev re gelek biaxivin. Ji we hemûyan re gelek sipas dikim."

**Çavkanî: Ajansa Nûçeyan ya Dîcleyê**

# Îşkence çeka sereke ya Komara Îslamî

**Selîm**

Serbarê hebûna yasa û daxuyaniyên cîhanî yên mafê mirovan dijî îşkencê ku di her zirûfekê de hatiye qedexe û şermezar kirin, lê mixabin hêj jî êş û azar û bêhurmetî bi mirovan re ji aliyê zaf rejîman, bi xasmanî rejîma Komara Îslamî vetê domandin.

Bê şik xurt bûna hizrên demokratîk û ramana mafê mirovan li seranserî cîhanê û tepeser kirina rewşenbîran û pêpes kirina mafê mirovan ji aliyê Komara Îslamî a Îranê ve bala zaf ji Îraniyan bo aliyê xwe rakêşaye û dixwezin bi rewşenbîrî û lêkolîn û mêze kirin bi aliyên cur bi cur wê olî, felsefî, civaknasî, dîrokî, pisîkolojîke wê di xizmet kirin bi qetandina benda îşkencê û berbend kirina wê û destve anîna azadiyên kesî de pişikdar bin ku mixabin hetanî niha jî bi çi encameke pozetîv negihîştine.

Di rastî de îşkence alavek e di xizmet hêz yan deshilateke taybetî de bo wergirtina zaniyariyan bi metodeke nejdil û îtiraf bi direw û boxtanên nerast û ji hemûyan girîngtir ji nav birina mirov û kesayetiya mirovan tê bikar anîn. Di civakên pêşverû de ku pêşketineke ber bi çav di bi destve anîna mafê mirov de bi dest xistine û ji ber wê ku hikûmet li destê xelkê de ye û ji bo pêşde birina armanc û xwastekên xelkê hewcehî bi îşkencê çinine, lê berevajî di civakên Îslamî de bingehên hiqoqî û exlaqî vî karî bi kiryareke heram û lomeker û parek ji ayînê dihesibînin ku bo yekem car di wan 13 sedsalên piştî Bêseta Pêxemberê Îslamê di serdemê deselatdariya Mihemed şa (Qacar) de di bin givaşa balyozxaneyên Rûs û Îngilîs de îşkence hate qedexe kirin. Di hikûmetên îdeolojîk û dîktatorî weke Komara Îsalamî de ku hikûmet diyariyek e ji aliyê Xwedê ve û paşa û rêber jî "Zel Elah", berevajî di civakên pêşeyî de hakimiyet û deshilatdariya xelkê, hakimiyeta Paşayê "Zel Elah" bêreng kirine û hebûna Pirosiseke Eqlanî û paqij bi mercê serekî yê rêveberî û deselatdariyê danane. Erê gelo dibe hetanî kengê gelên Îranê di bin siya wilayeta Feqî de çavmiqyayî û paşverû bimînin û



**Ciwanekî Kurd yê bajarê Pîranşarê di bin îşkenceya hêzên mirovkuj yên Komara Îsalmî a Îranî di sala derbas bûyî de**

bibin bi goriyê nêrîn û hizrînên kevn û şaşî yên wan.

Civaknasê Îranî Mecîd Mihemedî îşkencê bi berhema sê mijaran dizane. Yekem hêz û deshilateke "qehrî" ye ku qirar nine li hemberî tu kesekê bersîvdar be, ku nîzama "Wilayeta Feqîh" nûneratiya vê hêzê dike, çun ku Welayeta Feqîh li serweyî yasa, xudan deshilateke heta hetayî ye û di rû bi rû bûn tevî neyarên xwe ji vê alev (emraz)ê mifahê werdigire. Duhem bêzariya çavkanî girtî ji hevrikî û nakokiyên îdeolojîkî. Ku dibêje tenê îdeolojiyên pawanxwaz in ku dixwazin cîhan û cîhaniyan bi her nirxekê be, weke xwe lê bikin. Mijara sêhem leşkirê bêkar û girûpên civakî ne ku bi hêsanî xwe bi nirxeke kêm li xizmeta dadweran didanên, kesên kêm sewad (xwende) û bê paygaheke civakiye diyarî kirî ku di jiyana civakî de şikestxwarî ne û dîtineke nigatîv bi mirovên serkevtiye civakê bi xasmanî nifşa rewşenbîr û … hene.

Her çend Komara Îslamî xwe ji wajokirina konwansiyona dij bi îşkencê parastiye û diparêze û li gor birgeha 5 a vê Konwansiyonê nabe tu kesek bihê îşkence kirin û bikeve bin gef û ciza yan reftarên hovane yên dijî mirovahiyê, lê her çi kiryarên dijî mirovane, him bi fîzîkî û him jî bi rohî dijî gelên Îranê dimeşîne û di bin hakimiyet û zêrevaniya Welayeta Feqîh û yasa û siyaseta ne demokratîk û kevnarperwerane ya vê rejîmê de ye ku bi navê Ola Îslamê ve rewatî bi îşkence û îdam û pêpeskirina mafê mirovan û… tê dayîn û bi karekî pîroz tê hesibandin. Lewma karbidestên Komara Îslamî bo domandina deshilatdariya xwe û ji navbirina neyarên rejîmê û neçar kirina wan bi îtirafan, dest bi her cinayeteke dijî mirovî dikin û cehenemeke îlahî di girtîgehên welêt de afirandine. Tiştekî ron û aşkira ye ku Komara Îslamî bi mikanîzma "ehrîmen sazî" wate perde poş kirin li ser rastî û heqaniyet û dest avêtin bi tohîn û boxtanên nerast û hesibandina curmê bi ola Îslamê û pasavên mesebî ve weke "morted" kafir, "nasibî" û "muharib" di gel xudê de meşroiyetê bi vê kiryarê didin û bi hemû terzekî ji îdam û îşkencê ve bigire hetanî birîna endamên leş, sivikatî û bê hurmetî û kevir baran û… tevî girtiyan reftarê dikin û cewek wisan afirandine ku îşkencevan û karbidest ji ber pasavên mesebî vî karî bi xêr dizanin û bi dengê bilind yê "Ya Husên" û "Ya Zehra" xwendekaran ji nihomên serê yên xewgehan de fire didin û derbên giran li serê xatûna Zehra Kazimî didin û dikujin û ji aliyekî din ve jî azadîxwaz û xebatkarên demokrat îşkence û îdam dikin.

Lê ewa cihê heyrîmanê û heybetê ye ku Komara Îslamî wan kiryar û cinayetên hovane û dijî mirovahiyê dimeşîne û rûmet meşrûiyetê dide wan kiryaran, di serde jî bi propagende û helwestên xwe yên tûj û rixnegirane, li dijî kiryarên serbazên Amerîkayî derheq girtiyên Îraqî disekine û digel pirotoste kirina wan kiryarane dide xuyan ku Amerîka ya dagîrker ku Konwansiyona dijberî îşkencê îmza kirye, bi vê siyaseta xwe û wan reftarên nemirovane, mafê mirov û peymannameya dijberî îşkencê pêpes dike. Her çend ku ew kiryara serbazên Amerîkayî kirêt û dijberî yasa û tiradîsyonên navneteweyî bû, lê helwêsta micid û eşkere û demokratane ya rayedar û berpirsên payebilind yê Amerîkayî û daxwaza lêborîn û lêxweşbûnê û lêpirsîna serpêçkeran, ne tenê pakaneya baş bo vê kiryarê bû û karîn heya qaseke zor ji kerb û kîna giştî kêm bikin, belkî dan selimandin ku berevajî Komara Îslamî îşkencedan parek nine ji siyaseta wan.

Hewce ye were gotin ku YE li 20.06 ê vê mehê de li ser daxwaza Rêxistina Cîhanî ya Mafê Mirovan, Komara Îslamiya Îranê bi pêpes kirina mafê mirovan sûçdar kir û di daxuyaniya xwe de îşare bi vê yekê kirin ku serbarê cehd û bizava me, lê îşkence kirina zîndaniyên →

# Horiyên bext reş

Selîm Zencîrî

Pêlên nûçeya **Firotina keçên Îranî** ku çend rojan berî niha weke bombeyekê civaka Îranê û wijdana mirovahiyê hejand û bû bi mijar û nêçîreke baş bo rojname û belavokên hindur û derveyî, ku bizav û livlivîneke zaf di nava xelkê û berpirsyaran de afirand. Her wiha selimand ku pêvajoya ticaret û bazirganiya keçan û jinan û mişexta neçariya wan bo welatên qiraxa Girava Fars û heya hedekî jî Ewropaê hêj didome û ji caran xurttir bûye.

Her çiqas ku serhijmêriyek eseh û durist di vê derheqê de nîne ku bikare perde li ser kuncek ji vê rastiyê hilgire, lê roj nîne ku rojname û deng û bas, nûçeyê girtin û hiloşandina torên fisadê û ew jin û keçên ku dikevine ber êrîşa cinsî ve, neweşînin.

Ticaret û bazerganiya mirovan cinayet û kiryareke nemirovane û hov û kerbveker e ku bandorên nerêniye xwe li ser ciavkê û goriyên vê kiryarê bi cih dihêle, lê bi sedema ew cew û fezaya berteng û ne demokratîk û kevneşopî ku bi ser Îranê de zal e û bandora xwe li ser civakê di warên, wek: nebûna azadiyên çandî, nizm bûna astê aboriya malbatan, belengazî, bêkarî, kêm sewadî, berçav negirtina mafê jinan û tund û tûjî dijberî wan, zewacên zû û li ser neçariyê û hwd … de didanêt, lewma dibine sedema serhildan û çê bûna van pirsgirêk û nesaxiyên civakî.

Li gorî lêkolînan, bazirganiya mirovan di Îranê de bi du rêyan tê kirin:

1. Qaçaxa mirovan bi welatên Pakistan û Efxanistanê ji rêya sînorên Başûr û Rojhilata Îranê ku bi sedema nebûna zêrevaniyeke baş li ser karê lêpirsînê di binkeyên ser rêyên wê para sînor de û xurt bûna fisada malî kar hêsanî bo vê cinayetê dike û ber bi Pakistan û Efxanistanê tên şandin û xirabtirîn rewşa jiyanê bi tund û tûjiyê ve didomînin û ji bo her karekî mifah ji wan tê wergirtin.

2. Qaçaxa mirovan bo welatên derdora Girava Fars bi xasmanî welatên Erebî (Qeter, Îmarat û …) piraniya goriyên vê rêyê di nevbera jiyê 14-25 saliyê de ne û ji bo du



## Keçên Îranî li "Fecîre"yê hatin firotin

hiceta Eyda Fitir û Eyda Qurbanê di rê û resmekê de bi navê **"Hefle"** bi şêxên Ereb tên firotin, tê zanîn ku piraniya goriyên her du haletan ji keçên hilatî ji malan pêk tê. Ku hin ji wan tên dizîn û ewên din jî bi zewacên rewaletî û bi merema gihîştin bi hêviyên xwe û jiyaneke xweş û bextewerane tên xapandin û têkilî vê girovera cinayet û fisadê dibin.

Hêjayî gotinê ye ku di sala 2000'î ya Zayînî de konferanseke fermî ji aliyê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî bi pişikdariya 40 welatên cîhanê li Palirmo a Îtaliyayê hat lidarxistin. Di konferansa Palirmoyê de ku çar mijarên girîng (qaçaxa çek, mirov, mewada muxedir û …) û lêpirsîna sebebkaran (sûçdaran) û xebat dijberî fisada malî û simcî (exlaqî) û xebata navneteweyî bo her terze ne edaletî û afirandina ne ewlwhiyê di cîhanê de ketin ber bas û welatên endam neçar hatin kirin ku di nasîn û girtina serpêçkar û hevkarî tevî polîsê navneteweyî (Inter Pol) de çalak bin û daxwaz ji wan hat kirin ku bibin bi berbestek li pêşiya cinayet û kiryarên han. Zêdebarê wê ku Îran jî di wê konferansê de pişikdar bû, lê mixabin bi sedemên nediyar xwe ji pejirandin û îmza kirina Pertokola Palirmoyê parast.

Ewe jî di rewşekê de ye ku li gor rapora Rêxistina Navneteweyî serbarê xurt bûna nesaxiyên weke AIDZ û îtiyad hwd û …, salê çar milyon mirov pêkhatî ji jin û keç û zarokan ji rêya torên mafiyayî ve ku bi qasekî zaf ji rêya Îranê bo Tirkiye û Feranse û welatên Erebî tên bazerganî kirin û bi milyardan Dolar nisîbê wan dibe.

Lewra hewce ye ku gavên micid û bilez derheq vê cinayetê bihên avêtin. Ku bê şik bi tevli bûna Îranê bi Pirotokola Palirmoyê, azadiyên çandî, kontirola xurt ya sînoran, piştevanî û mêze kirin bi goriyan weke gorî ne sûçdar (tawanbar), lêpirsîna micid ji serpêçker û tawanbaran, afirandina derfetên karî, dana zanyariyên hewce bi xelkê, hêsan karî bo zewicîna ciwanan, misoger kirina hewcehiyên perwerdehî û alîkariyên aborî bi wan û ji hemûyan girîngtir hilgirtina zêrevaniya tund û fezaya berteng li ser keçan û berçav girtina mafê jinan di civakê de ku hemû rê çareyên bandordar in di nehêlan û xebat dijberî vê cinayeta nemirovane de.

## Îşkence çeka sereke ya Komara Îslamî

**Dom: R. 12**

siyasîbterzekî hovane di Îranê de didome û her wiha xurt kirina têkiliyên aborî û siyasî yên xwe jî girêdayî bi baştir bûna mafê mirovan di wî welatî de hesibandin. Her wiha Kofî Ennan jî ji roja navneteweyî ya piştevanî ji goriyên îşkencê de (26.06.2004), serbarê şermezar kirina îşkencê û reftarên tund yê nemirovane, daxwaza lêpirsîn û ciza bo sebebkarên îşkencê kir û da xuya kirin ku dibe hemû welat rêz
ji mafê Mirovan û peyrewî ji konwansiyona dijî îşkencê bikin û xwe ji her terze reftarên tund û xirab biparêzin.

Ne kêm in ew kom û civat û partî û rewşenbîr û zana û mêrxasên ku li ser wê bawerê ne ku bo ji holê rakirina îşkencê diêt sîstema îdeolojîkî û îstibdadî ya Komara Îslamî li ser kar nemîne, her wek çawa bo xebat dijî "Malariyayê" hewcehî bi ji nav birina mêşan û hişk û paqij kirina qobiyên derdora jiyana heye.

***Jêder:***
***Pirtûka: "Camiê Şinasiyê Noxbê kuşî"(civaknasiya bijarde kujî)***
***Kovara Aban, hejmara 138***

# Stran pareke zindî ji dîrokê ye

**(beşa 2 û dawî)**

**Noredîn Sofîzade**

Di pişka yekem a vê mijarê de îşare bi vê çendê hate kirin ku her neteweyek pêka çand û dîroka xwe rewişt û tîtalên taybet bi xwe hene ku stran pareke berçav ji çanda hemû neteweyan pêk tîne . Lêkolînên îroyîn ên li ser zimên derdixin ku stranê roleke berbiçav di parastina zimên de hebûye, û hin caran bêtir ji pirtûk û nivîsaran bandor li ser fêr bûn û parastina ziman û toreya neteweyî kiriye. Di vê navberê de strana Kurdî bo parastina zelaliya peyvên make yên Kurdî roleke taybetî lîstiye ku em dikarin bibêjin yek ji xizmetên here mezine strana Kurdî ji bilî serhatiyên dîrokî ên Kurdistanê xizmeta bi zimên e. Gelek peyv di zimanê Kurdî de hene ku hin caran mirov li ser resen bûn yan biyanî bûna van peyvan dikeve nav şikê de, lê dema mirov guhdariya strana Kurdî bi taybet yên folklorî dike gelek peyvan dibihîse ku pêştir şika biyanî bûna van diçû, lê balkişandin li ser pergela bikar anîna wan peyivan û naveroka stranê der dixe ku ev peyivane peyvên make û resen in.

Di pişka yekema vê mijarê de hatibû ku stran anku kilama bi awaz ku bi du terzan tê stirana: **1.Strana bi rîtm**, **2.Strana bê rîtm**. Di beşa yekem de strana bê rîtm hate şirove kirin û di vê pişkê de jî em dixwazin strana bi rîtm bas bikin. Lê hewce ye pêşde rîtm bihê şirove kirin.

Rîtm derbek e ku di teoriya hunera muzîkê de bi **tîmpo** hatiye bi nav kirin, anku dim – tek ku pêk tê ji her rêze girmêneiyekê, dengê çepikên destan rîtm e, dengê pêyan li dema rê çûna mirovan rîtm e, dengê diholê rîtm e. Bi kurtî her girmênek ku nikare dengê xwe dirêj bike wate di demeke kin de çend caran bê qetandin rîtm e, bo mînak zorna, muzîk, û dihol rîtm e.

Mirov dikare tevî rîtmê xwe bilivîne û yek xistina livînê digel rîtmê dibe reqsîna bi rîtmê re. Di Artêşekê de dema ku rêje bi rêve diçe, her leşkerek dibe ku bi dengê marşê an bi dengê pêyê leşkerê din xwe rêk bixe, heta ku bikarin hevahengiya xwe biparêzin.

**Rîtm û stran:**

Rîtm di çarçoveyeke taybet de tundiyekê dide stranê û heke stranbêj vê rîtmê ku ahenga stranê ye berçav negire û strana xwe tevî vê rêk nexe, stran ji çarçoveya xwe derdikeve û şaşî dikeve nava ahenga vê stranê.

Rîtm xwediyê dîrokeke dûr û dirêj e ku berî hemû aletên muzîkê ji aliyê mirovan ve hatiye kifş kirin ku li serdemê destpêka peyda bûna Îslamê an heta berî hingê jî di rê û resman de çi bi xweşî û çi bi nexweşî ji rîtma defê mifah



wergirtine û pêka ahenga rîtmê yan govend girtine yan xwe hejandin e.

Strana bi rîtm di nava Kurdan de zaf metodên xwe hene ku di şahî û govendan de çend cure stran têne gotin ku her stranek reqsa taybet bi xwe heye û hevaheng bûna govendê girêdayî ye bi dengê rîtmê re. Stranên dawetên giran anku **Geryanê** yan **Milanê** rîtma xwe heye, her stranek ku bo daweta **Kutanê** bihê gotin her ewa ye ku renge li hin cihan giran be û li hin cihan jî sivik, lê belê rîtma stranên daweta **Qilîçê** di gel rîtma daweta **Kutanê** bi ferq e.

Strana bi rîtm ji du pişkên folklor û nû pêk hatiye. Zaf stran weke mîratên nifşên berê dest bi dest gihîştine destê nifşa îro, nifşên berê dema gotina strana bi rîtm li nebûna amûr û alevên muzîkê, ji bo parastina rîtma stranê ku şaş nebe neçar bû an xwe bihejîne, an serê pêyê xwe li erdê bide. Piraniya kilamên stranên bi rîtm ên folklorî bi soj û evînî ne, lê heke em bala xwe bidine stranên bi rîtm; em dibînin ku tenê bi merema dawet û govendê nehatine gotin, belku sirûd û stranên şoreşvanî jî di vê pişkê de tên guncandin. Bo mînak kesayetiyekî wekî Şivan Perwer hozanvanê mezin yê gelê me serbarê wê ku piraniya stranên wî bi rîtm in, hevdem jî şoreşvanî û niştîmanî ne.

Gelek stranên bi rîtm dîsan bo şer hatine gotin, an qala serhatiya şervanekî dikin, stranên weke **Şenge**, **Xelef**, **Keleşo** ku stranên folklorî ne, lê belê her di van de jî seha şer û mêraniyê tê xuya kirin, me di pişka yekem a vê mijarê de qala vê çendê kir ku stranê di nava kurdan de remza xwe heye û bi xweşî û nexweşiyê wate li şahî û şînê de têne gotin.

Renge dema em mêzeyî stranên neteweyên dine cîhanê, bo mînak netewe yên niştecî li Ewropa bikin û tu Stran jî di warê şer û dîrokê de nebin, an jî qala serhatiya şervanekî xwe nekin, lê belê para here zaf ya dîroka Kurdan bi stranan hatiye parastin û her wek me bas kir di nav strana bi rîtim de jî serhatî hene û dîrok jî tê bas kirin.

Dengbêjan beyt û bendên stranên Folklorî an bêjin bendên li warê bûyeran dev bi dev heta îro anîne ku van stranan hem di warê Folklorî û hem di warê kifş bûna peyvên resen û make yên Kurdî de girîngiya taybet bi xwe hene. Bi li berçav girtina van demên ku dîrok bi van hatiye vehûnandin derdikeve ku xwendin û xwendevanî di nav kurdan bi taybet di nav êl û eşîran de gelek kêm bûye, lê ev rewşa ku di pêvajoya domandina dest bi dest kirina Folklora Kurdî bi taybet di warê stranê de berahiya neman û ji holê rabûna ev xizîneya pir bihagiran girtiye û heya îro jî ew pêvajo didome.

# Navdanana bi kurdî parek ji çanda neteweyî

Kanî Qizan

Yekem diyariya ku piştî ji dayikbunê ji aliyê dayik û baban ve bi mirov tê pêşkêş kirin nav e. Mirov ji rêya nav ve tê naskirin, gazî kirin û ji kesên din cuda kirin. Serbarê wê ku nav dîrokek kevn û dûr û dirêj heye, alevekî bihêze jî di parastina ziman û kelturê de herwiha pareke jî ji wêjeya netewi.

Tiştekî edetî û, haşahilnegir e ku hemû neteweyek xwedî ziman û koltor, xwediyê navên zimanê xwe ne, lewma lênêrînek bi dîroka kurdan dide selimandin ku dema kurd xwedî deshilat û dewlet bûne, navên wan jî bi kurdî bûne, lê berevajî, di çax û serdemên din de bi hegera dagîrbûna kurdistanê û sepandina siyasetên kevneşopî yên wan û sedemên olî, civakî û siyasî ev tişte berevaj bûye ku mînaka herî zîndî ya wê, hikûmeta kurdî ya Mad (700 salan berî Zayînê) ku bo heyamê 150î salan bi ser Kurdistan a mezin de deshilatdarî kir, lê di sala 550 ya pêş Zayînê de kurdistan ji aliyê paşayê Fars, bi navê Kurûş hate dagîrkirin û dawî bi hikûmeta Kurdî anî, lewma yek ji tiştên ku kete ber bandora wê zirûfê, navdanana bikurdî û domandina wê hetanî çaxê hatin û blav bûna Ola Îslamê bû.

Di qonaxa pêş hatina Ola Îslamê, Kurdistan çend caran hatiye dagîr kirin û gohertinên siyasî bi ser Kurdistanê de hatine û her yek ji wan jî bandora xwe li ser navdanînê hebûye, lê piştî hatin û bilav bûna Ola Îslamê, Kurdan pêşwaziyekî baş ji vê ayîna esmanî kirin û di gel xurtbûna vê ayînê di Kurdistanê de diyardeya nav pêvajoyeke din bi xwe girt, ew jî danîna navên Erebî bi ser zarokên Kurd . Kurd wisan difikirîn ku renge ev pêvajoye parek ji hewcehiyan be di xizmet cî bi cî kirina vê ayinê de, lê berevajî wê nêrînê ku bi çendîn sedsalan bi ser xortên gelê Kurd hate sepandin, tu pêwendî û hewcehiyek di navbera navdanan bi Erebî di Îslamî bûnê de nehatiye ku sedema wê jî hin ji ayînî yên me (Mela, Şêx, Qazî)dewr û rola xirab û nerênî di vê derheqê de lîstine .

Ji hêla din ve jî fakterên derekî ji Kurdan jî rêxweşker bûne di domandina vê diyardeyê de wekî parek ji armancên xwe yên siyasî û siyaseta Ereb kirina Kurdan û sepandina zimanê xwe bi ser netewa me. Hewce ye em Îşare bi vê yekê jî bikin ku bi sedema dagîr bûna kurdistanê ji aliyê dagîrkerên cur bi cur ve ji bilî navên Erebî, navên din yên Tirkî û Farsî û hwd ... jî di navdananê de bandordar û karîger bûne .

Lê bi xweşî ve mirov dikare bibêje ku piştî dawî bûna şerê yekem yê cîhanî û hatine rojeva tevgerên rizgarîxwaz û dirûşmên serxwebûna netewan û çêbûna yekem hikûmeta Kurdî di sedsala bîstan de li Başura Kurdistanê û herwiha xurtbûna roj bi roj zêdetir ya xwandin û astê hişyariya neteweyî, taboya pêvajoya caran û nêrînên kevneşop û nerast û tarî hate şikandin û navdanana bi Kurdî hate nava cîhana zarokên Kurdan .Lê mixabin di parçeyên dinê yên kurdistanê de bi sedema dagîr bûna Kurdistanê ji aliyê dagîrker û nasyonalîstên serdest li ser Kurdistanê, hêj diyardeya navdanîn bi zimanên bîhanî Erebî, Farsî,*Trkî* di nava civaka Kurdî de didome û tên xuya kirin.

Vêca ji ber vê hindê ku nav roleke girîng û pozetîv di parastina nasnameya neteweyî de dilîze û navdanana bi Kurdî jî yek ji remz û kulturên berbiçav û girîng ya civaka Kurdî ye , divêt ku girîngî pê bihê dan, çunkî em bi vî karî him kultura kevn ya xwe diparêzin û him jî hizra kevn ya nasyonalîstî jî ji reh û rîşal ve dertînin ku her tim xwastine nasnameya me bişon û kultura me jî têkbidin. Lewma ji bo Kurdî kirina navên zarokan hewcehî bi hişyariyeke zêdetir ya neteweyî heye û dixwaze ku em guhertinan di warê civakî de pêk bînin û dest bi xebat û şoreşekî çandî bikin û çi din mejiyê zarokên xwe bi dîtin û ramanên dagîrkeran nelêbînin û bi hilbijartina navên Kurdî û xweş û watedar bi ser zarokên îro û pêşerojên neteweya xwe, pîlan û komployên neyaran pûç bikin û bi komkirina navên resen û xweş û jêhatî yên Kurdî diyariyekî binirx ya çandî pêşkêşî dayik û baban û xizmet bi dewlemend kirina zimanê Kurdî bikin, ku ev erkê mezin jî d stûyê hemû aliyekî , bi taybet zimannas û rewşenbîran de ye.

## Gotinên mezinan

❍ Cîranê dilxelet, ji êşa taûnê dijwartir e.

❍ Dewlemendê dîndar, ji nimêjkerê zordar çêtir e.

❍ Ev dayika tu di landikê de hejandî, qerê wê ji bîr neke.

❍ Em qedrê avê nizanin, heta ku bîr hişk nebe.

❍ Xwe parastin, ji çareser kirinê baştir e.

❍ Bihar bi gulekê nahîte xemilandin.

❍ Serve yar e, … binde mar e.

❍ Jin stûna malê ye.

❍ Kesê ku kincê/a wî ter bibin, ji baranê natirse.

❍ Serê direwîn, her dem şor e.

❍ Pezê bê şivan, risqê Guran e.

❍ Xwîn bi xwînê nahê şiştin.

❍ Baweriya xwe bi kenîna zaliman nehîne.

❍ Heke dinya yasa têde nema, mirov dê kevine bela û xema.

❍ Heke hosta, hosta be, bila dar xwar be.

❍ Heta jiyan hebe, hêvî jî heye.

❍ Kesê zana mifahê ji şaşî yên xelkê dinê werdigire.

❍ Giya di bin berî de namîne.

❍ jan jiyanê tamdar dike, jiyan jî janê domdar dike.

❍ keyfa marî Bûrîjanê nehat, çû ber derê kunê şîn bû.

❍ Dil wekî şûşê ye, heke şika, hevnagire.

# Xwedê min goriyê wê bike

**Siyamend Terbî**

Heyve şeva çardê gelek ronahî bû, wek şeva Kevçerê diçû û dinya ronahî bû. Pêşmerge bo aliyê devera … diçûn. Deşta pan û berîn, li derdora wê çiyayên bilind wek dîwarekê hatibûn kişandin û ava çem û kaniyan sipî û zelal di bin ronahiya heyvê de dibiriqî û gelek balkêş bû. Li ser pelên dar û giya dilopên xunavê ketibûn ku piyê her rêvîngekê hetanî çokan ter dikir.

Bilez gav hildigirtin, gurc û peyt, saq li piyan, rext li piştê, çek li destan. Çend gavan dûr ji hev diçûn û, wekî şêran di nav dilê dijmin de dizivirîn û hêzên dijmin wekî çeqel û rîviyan di şûndevsa wan de digeran. Bi awayekî rê diçûn ku xişpe xişpa piyan zaf kêm dihate bihîstin. Li çar aliyên xwe dinihêrîn û di berahiyê de jî zêrevanî dikirin, ne wek bikevine buseya dijminê dilreş û xwînmij. Diyare di cihekî wiha de kêm kes peyda dibin ku di hemberî şêran de qut bin û bikarin li hember gernasan xweragir in. Hêdî hêdî li cihê diyarkirî nêzîk dibûn û gihîştine rêzedarên pêş gund û di bin daran de bi awayekî "partîzanî" civiyan, heta cihê mana roja paştir û kar û barên "teşkîlatî" (rêxistinî) ên xwe diyarî bikin. Di navbera civînê de hevalê ***"Seîd"*** pêşniyaz kir ku zaf pê xweş e seredaneke malbata xwe bike û dayik û bavê xwe bibîne.

Piştî bas û gengeşe kirinê, biryar hate dayîn ku şevê di filan cihî de dimînin û sibê di filan cihî de. Pêşniyaza ***"Seîd"*** jî hate pejirandin ku dayik û bavê wî bihêne cihê diyarkirî û hev û din bibînin.

Dijmin bi tevahî di herêmê de sîxur û kirêgirtiyên xwe xistibûne rê û bi hezaran çekdar û Caş li şûndevsa Pêşmergan digeran û gund bi gund diçûn û dişopandin. Çavnihêrî gelek nexweş e, ew roje him bo Seîd û him bo dayik û bavê wî gelek direng û dijwar dibihorî û dem û gav jî xilas nedibûn. Bi her halê heyî sîber bi ser herêmê de dihat û garan bo nav gundan diketine rê û pale (kedkar) û cotkaran zevî bi cih dihêlan û avdêr mijûlî dana şevavê bûn. Bayê şemalê yê hênik hêdî hêdî bi ser herêmê dihat. Stêra mexreb hate derê û diçilvilî. Çaxê hevdîtinê nêzîk dibû. Hevdîtinek di navbera dayik û bav û kurê serfiraz yê wan yê ***Pêşmerge*** û dûr ji welat û niştimanê ku çend sal bû bi dîtina hev şad nebibûn û, bihêvî bûn bi wê hevdîtinê kul û meraqên dilê xwe darêjin û bo careke dinê hev li hembêz bikgirin. Dem û gav gelek hêdî derbas dibûn û her demek bi qasî demjimêrekî dikişand. Dayik û bavên dilbirîndar û hinavsotî yê dîtina xortê Pêşmerge heyamekî dirêj bû di bin dara sêvê çavnihêr bûn. Hinek şirînî jî bi xwe re anîbûn. Tarîtiya şevê dest pê kir û çekçekûle li hêlûna xwe hatine der û mijûlî firînê bûn.

Heyv di gundê me de xuya bû û tarîtiya şevê şikand û wekî çirayekê ew der ronahî kir. Kereke pez wêdetir hevêz girtibû û şivan mijûlî şûv xwarinê bû û gurriya agirê wî bilind bibû. Dengê seyên wî bilind bû û bi hev re li tiştekê apure girtin!

- Hatin!
- Kê hat?
- Ew in.
- Tu çawa dizanî?
- Dizanim. Hundira min xeber dide eva apure ya seyên mirovan e, ew jî mirovên çekdar!.

Piştî çend deman dengê xişpe xişpa piyan hat û nêzîk bûn. Çekên wan di bin ronahiya heyvê de dibirisqîn. Kulepiştî di nav milê van de û saqên pêyan, bejn û balaya Pêşmergan dida kifşê. Ji ber wan derbas bûn û çûne jorê.

- Eva ***"Seîd"*** bû, were em biçine jorê.

Li terecanan serketin, lê hêla çend terecan mabûn ku biçine jorê, dengê rupênê hat.

- Ay ket!
- Çi bû? Kê ket?

Bavê Seîd ket! Çûne hinda serî, ji hiş çû bû û leşê sar û sir çi hereketek nebû. Hilgirtin û birine jorê. Seîd serê bavê xwe dana ser çoka xwe û rondikên wî bi ser rûmetê wî dihatine xwar û digot: Babo! Babo! Çavên xwe weke. Tu bi Xwedê bo carekê jî be ji nav çavê min binihêre û mêzeyî kurê xwe bike. Eva çend sal e ez li benda dîtina we me û bi hêvî bûm te bibînim û bi we şad bibim. Babo! Tu Xwedê tenê bo carekê çavên xwe weke û tev min biaxive.

Lê sed heyf û mixabin û bi kovan û keserekî zor, ve taze şol ji şolê bihorîbû û bavê wî bo her tim çavên xwe li ser hev danabû û hêvî û xweziya dîtina kurê xwe yê Pêşmerge tevî xwe bire bin axê û ji keyfxweşiya kurê xwe tûşî şelta mejî bû û bo her tim xatira xwe xwest.

Hevalên Seîd bi mêze krina wê yekê gelek nerehet û dilgiran bûn. Dayika Seîd wekî şêrejinekê ku birastî îman û baweriyeke bihêz hebû, bedela wê ku rondikan bibarîne û bilorîne, dildariya kurê xwe yê Pêşmerge û Qehreman û hevalên wî dida û digote wan: "Kurên min hûn nîgeranê me nebin, taze me temenê xwe bihorandiye. Xwedê me gorî û qurbana we bike. Negirî kurê min nerehet nebe. Eva karê Xwedê ye …".

Çiqas giran e, çiqas bi êş û cihê kul û keserê ye, mirov bo dîtina dayik û bavê xwe biçe, lê bedela wê yekê tûşî meytên wan be û hemû xwezî bibine kovan û kul û keser û xweşî bibe tazî û şînî.

Biryara çûnê hate dan ku dibe wî cihî bi cih bihêlin. Xatira xwe xwestin û bi çavê rondik derketin. Seîd jî xatira xwe ji dayikê xwest û li hembêz girt, lê destê wî ji dayikê qut nedibû (nediweresiya). Lê tu rêçareyek nebû. Carekî din dayikê Seîd maç kir û got: Here kurê min, şîrê berê min helalê te be, Xwedê piştevanê we be û serê we sax be. Feleka bextreş û qederê wiha hez kiribû".

Seîd di rêyê de difikirî û bi xwe re digot: "Çima min nekarî li cem dayika xwe bimînim û dildariya wê bidim? Çima min nekarî di serexweşiya bavê xwe de pişikdar bibim? Çima welatê min bûye heps û bi hezaran dijmin li dora me digerin û ji me re bûne neyar. Başe sûç û guneha me çiye?

Dengek li dûrve hat!

Ey lawê dilbirîndar, sûç û guneha we eva ye ku hûn Pêşmerge ne, hûn ronahiya çavên gel in, hûn mêrxwas û egîdên şev û rojên giran in, hûn qelema nav çavên dijm in.

# *Fîlm çêkerê Kurd Ferhad Erşedî:* Kurd Ne xwediyê Sînemayê ne

*Bê guman di cîhana îro de ku bi navê serdema teknolojî û enformatîk û gundê biçûk (Globalization) hatiye nas kirin û bi rastî jî hemû warên jiyana mirovan jî xistiye bin bandora xwe, mifah wergirtin ji hemû amûr û alavan bo xizmet bi civak û doza neteweyî di warên cur bi cur de serkvtineke mezin dibe. Ji bo bêtir nasîna pêvajoya sînemayê û liv û tevgerên sînemaya Kurdî, me hevdîtinek bi Fîlm çêkerê Kurd Ferhad Erşedî re pêk anî. Bala we xwendevanan bo pirs û bersivandina vê hevdîtinê radikêşin:*

**Pênaseya te bo hunera Sînemayê çiye?**

Andre Bazn dibêje: Her wêneyek li ser perde ku bizvîn (hereket) hebe, ew Sînema ye. Li gor vê pênaseyê sînema ji 2 pêkhateyên sereke çê dibe: **1.Wêne**, **2.Bizvîn**.

Xasmaniya sereke ya Sînemayê wêne (teswîr) e ku xala hevbeşe piraniya hunerên wekî nîgarkêşî, fotogirafî û hwd … û heya di wêjeyê de jî reng vedaye; weke wêne di helbestê de yan di romanê de. Lê her di wê demê de cudahiya wan eve ye ku wêne di helbest û wêjeyê de **"întizaî"** ye, lê di sînema û hunerên din de **"eynî"** ye.

Taybetmendiya herî sereke ku sînemayê ji hunerên din mezintir dike livlivîn e ku faktera bingehîn ya sînemayê ye.

**Dîroka dest pê kirina hunera Sînemayê li Îranê bo çi demekê vedigere?**

Roja sêşemî 23.05.1279 (1901)'an de dema ku Mizeferedîn şa di sefera welatê Biljîkê de bû, "Mîrza Ibarhîmxanê Ekasbaşî" mijûlî fîlm hilgirtin ji şa dibe, dîroka dest pê kirina hunera Sînemayê di Îranê de bo piştî wê rojê vedigere; her çiqas ew fîlme di warê hunerî de berhemekî baş nebû, lê di şûn xwe de ew huner û pîşe(Sanet)ye anî nava civaka Îranê; ew fîlme 5 sal piştî çê bûna yekemîn fîlma birayên Lumîr (trenê) hatiye wêne girtin.

**Gelo di Kurdistana îranê de jî, di wê demê de hunera Sînemyê dest pê bû?**

Na, ne li dema Qacaran û ne jî di dema Pehlewiyan de Sînema nehate Kurdistanê. Piştî şoreºa gelên Îranê jî Sînema ya bi awayekî "Hirfeyî" (pisporane û zanistî) nehate Kurdistanê. Ji sala 1366'e Rojî Encumena Sînema ya Ciwanên Îranê çiqa xwe li bajarê Sine damezrand ku ew navende piranî erk û wezîfeya hîn kirinê li stû bû ku mil bi milê wî erkî hetanî astekê alîkariya ciwanan dida bo çê kirina kurte Fîlman, heta niha ku 17 sal ji hatina Sînemaya (Amator) bo Kurdistanê derbas dibe, lê nebûye sedema pêşketina sînemayê bi awayekî zanistî û "hirfeyî".

**Wekî Fîlm çêkerekî Kurd, tu rewşa berhemên sînemayî li Kurdistana Îranê çawa dibînî?**

Li gorî serhijmêriyan, qasa çê kirina fîlman di Kurdistanê de di astekî zor baş de ye, lê her bi wê qasê jî di warê naverok û kakilê de lewaz in. Fîlm çêkerên Kurd ên Îranî giringî û bihayê nadin bi mijar û babeta fîlman; mijara fîlmên wan pitir dubare ne (zarok, kal, hejarî û feqîrî), ew jî bi formekî kelîşeyî. Di warê teknîkî de serbarê wê çendê ku 15-16 sal e karê fîlm çê kirinê di Kurdistanê de daye dest pê kirin, lê mixabin hêjî kêmasiyên zor pêve diyar in.

**Bi hizra te wêje çend dikare xizmet bi Sînemayê bike?**

Her di destpêka geşe kirina sînemayê were hetanî niha, wêjeyê xizmetekî xuya û berbiçav bi hunera sînemayê kirî ye, bi hizra min wêje bû ku sînema geş kir û afirand. Merema min piranî du çiq ji wêjeyê (wêjeya nimayîşî (nîşan dan) û çîrokî) ye. Heke em çavekê bi wan welatên ku xwediyê sînemayeke bihêz û dewlemend in, bikin; em dibînin ku wêjeya wan welatane di asta cîhanî de bi nav û deng e, weke: Firanse, Birîtanya, Emerîka û hwd … ku di warê edebyata dastanî weke Romanê de gelek bihêz û dewlemend in ku her eve bûye bi çavkaniya geşandina wêjeya nimayişî (nîşandanê), yan bi dîtina min her welatek ku bixwaze bibe xwediyê sînemayê divê rewşa geşandin û pêşketina wêjeya xwe xweş bike.

**Li gorî pênaseyên ku me qala wan kir, gelo Sînemaya Kurdî heye an na?**

Bi hizra min na, Ji ber ku: 1.



**Kurte jiyana hunermend Ferhad Erşedî:**

Ferhad Erşedî sala 1347'ê Rojî (1968) li bajarê Merîwan a Kurdistana Îranê ji dayik bûye, xwandina destpêkî û navendî di wî bajarî de kuta kirî ye. Sala 1362 (1983)'an bi sedema şerê Îran û Îraqê bi malbata xwe re diçine bajarê Sine û xwendina paşnavendiyê di wî bajarî de xilas dike.

Piştî ava bûna **Encumena Sînemaya Ciwanan** li bajarê Sine, Ferhad Erşedî wek kesekî hogirê hunera fîlm çê kirinê li Encumena Sînemaya Ciwanan a bajarê Sine hate wergirtin. Di wê Encumenê de zandorên fêr bûna wênegirî û fîlm hilgirtinê bo çend Kurte fîlmên hunermendê Kurd Behmen Qubadî bi navên **"Gulbacî"**, **Niha jî jiyan** û **Weke dayikê** da dest pê kirin. Hejmareke kurte fîlman bi navên jêrîn berhem anîne:

1. Fezaya Vala (1990)
2. Bo çend Qiranan pitir (1990)
3. Avahiya çandê (1991)
4. Aliyekî din (1993)
5. Agirandîsman (1994)
6. Tu çakiyê bike û … (1996)
7. çal (1998)
8. Moraşîn (1997)

Hunermend Ferhad Erşedî ji sala 2001'an ve rû li Kurdistana Îraqê kiriye û neçar bi dest pê kirina jiyana penaberiyê bû. Serbarê vî halî jî karê huneriya xwe didomîne, her wisan jî ew endamê PDK Îranê ye. Ji sala 2001'an were hetanî niha ev Fîlmene berhev kirine:

1. Kore Jin – Yekemîn fîlma çîrokî bo KURDISTAN TV'yê
2. Nirxa Azadiyê, jiyannameya şehîd Dr. Qasimlo
3. 56 sal xebat, der barê 56 sal tekoşîna PDK Îranê
4."Minîş gaberdekanim Xweş dewêt"
5. "Cuwamêr"
6. Êre Dengê Kurdistana Îranê ye

# Hevdîtinek tevî hunermendê Fîlm çêker yê Kurd Ferhad Erşedî

**Dom: R. 17**

Kurd ne wekî neteweyekî serbixwe di cîhanê de hatiye nas kirin û bi wateyekî din Kurdan kiyan (heyîn)a xwe tu nine, ne xwedî dewlet û hikûmet in, 2. Neteweya Kurd ne di asta hindurî û ne di asta navneteweyî de nekariye bibe xwedî berhemên Sînemayî, 3. Wêje (Dasatanî û nimayîşî) ya Kurdî bi awayekî hewce pêş neketî ye!

**Ji Fîlm çêkerên Kurd ên Kurdistana Îranê navê çend kesên pispor û navdar bo me bas bike?**

Niha pir kes hene ku wekî fîlm çêker mijûlê kar kirinê ne, ku em dikarin îşarê bi van navane bikin: Dr. Qutbedîn Sadiqî, Behmen Qubadî, şehram Elîdî, Erfan Isamî, Abidîn Elî Weysî, Hemîd Qewamî û zor kesên din.

**Berhemên çi yek ji wan hunermendane bi dilê te ne?**

Her kesek ku bo pêşde birina sînemayê û nemaze çand û hunera Kurdî dixebite, ez destên wan maç dikim.

**Ew fîlmên ku di parçeyên din yên Kurdistanê de berhem hatine, tu çawan dinirxînî?**

Helbet ez pêşde vê çendê bibêjim ku min zortir hay ji Kurdistana Îraqê heye û ji pêvajoya karê hunera sînemayê bi başî ji parçeyên din yên Kurdistanê (Tirkiyê û Sûriyê) bê xeber im. Pêvajoyeke fîlm çê kirinê di Kurdistana Îraqê de dest pê bûye ku li gor dîtina min serbarê kêmasiyên wê, zor baş e. Heke em bi duristî lêbinihêrin di Îraqê de di dirêjiya dîroka Sînemayê de, wana sînema tu nebûye û qet jî heya niha jî pêş neketiye, eva sedema herî girîng ya paşdemana sînemayê di Kurdistana Îraqê de ye. Hêvîdar im ku bi hewl û xemxuriya hogirên Sînemayê, ev hunere di vî parçeya Kurdistanê de bigihîje astekî bilind.

**Kultur û zimanê Kurdî bi giştî çiqas dikare rol di sînemaya Kurdî de hebe?**

Tu lêbinihêre, welatek mîna Japonê ku xwediyê sînemayê ye û sînemaya wî welatî di cîhanî de bi nav û deng e û xwediyê dehan fîlmên cîhanî ne, çima bûn bi xwediyê ew tiştane?! Bi giringîdan bi Kultur û zimanê gelêriye xwe di fîlman de. Hekî Kurd bixwazin bibin bi xwediyê sînemaya taybet bi xwe, divêt hewl û bizavan bidin ku çand, kultur û zimanê paqije Kurdî di fîlman de bikar bibin.

**Li gor nêrîna te sînema dikare çend xizmetê bi nasandina doza gelê Kurd bike?**

Hekî em bala xwe bidine sînemaya Emerîkayê, bo me derdikeve holê ku mijara fîlmên wan rengvedana jiyana Emerîkayiyan(kultur, ziman,siyaset û hwd …) e. Sînema bilî wê çendê ku huner e, alaveke zor girînge ragihandinê ye ku pir bi hêsanî tuxîban dibire ku dikare bi metodeke rêk û pêk jiyana nav mala Kurdan veguhezîne bo rojeva siyasetvan û rewşenbîr û gelên din yên welatên cîhanê.

**Li Îranê hinek berhemên hunerî wekî fîlm û rêze fîlm hizrekî xirab û ne baş ji neteweya Kurd û herêmên Kurdan nîşan didin, sedema wan bo çi vedigere?**

Belê, rast e. Ev karê ne baş vedigere ser felsefeya hizr û ramana paşverû ya hikûmeta Îslamî ya Îranê, ku karên sereke yên wan têkdana rastiyan e.

**Kekê Ferhad can, seba amade bûna te bo beşdarî kirin di vê hevdîtinê de, em gelek spasiya te dikin.**

Ez jî pir bi dil spasiya we dikim û hêviya serkevtinê di kar û xebata we de dixwazim.

# Weşana bi zimanê Kurdî di Telvîzyon û Radyo ya Tirkiyê (TRT)'ê de

Dewleta Tirkiyê di çarçoveya hewl û bizavên xwe yên bo endam bûn di Yekîtiya Ewropayê de, dest bi weşana bernameyan bi zimanê Kurdî di Televîzyon û Radyo ya TRT'ê kir.

Kanala Fermî ya dewleta Tirkiyê (TRT 3) yekem bernameya bi zimanê Kurdî di roja çarşemî 9'ê Jun'ê da dest pê kirin. Tê gotin ku di pêşkêş kirina bernameyan de pir kêmasî hene û dewleta Tirkiyê naxwaze bi rengekî micid bi zimanê Kurdî binihêre. Lê biryara han di cihê xwe de karek pozetîv û erênî ye ku dewleta Tirkiyê daye dest pê kirin.

Qasê 80 salan e ku dewleta Tirkiyê ziman û nasnameya Kurdan bi fermî înkar dikir, lê dana biryara weşana bernameyan bi zimanê Kurdî wan nêrînan pûç û betal dike. Serbarê vê çendê dibe ku dewleta Tirkiyê gavên baştir û bêtir ji bo parastina mafên mirovan, demokrasî û mafê neteweyî yên Kurdan hilgire. Yekîtiya Ewropayê bi tundî Tirkiyê ji ber bi bin pê kirina wan dozane mehkûm dike.







Eva demekî dirêj ku tirkiye dixwaze bibe endamê YE'yê, lê di piratîkê de çi gav bo çareser kirina wan pirsgirêkane di civaka Tirkiyê de neavêtiye.

Hejî gotinê ye ku bernamên Kurdî ji nûçe, muzîk, werziş û dokumentên cur bi cur pêk hatiye.

# Çend gotinek derheq helbestvan û nivîskarê Kurd Qedrîcan

Dom: R. 20

Dara Natiq

**Ew perde ya reş û tarî**
**Ku ji şevên reş diyarî**
**Min ji rûyê xwe kişand**
**Li ber çavên xwe çirand**
**Û avît ....**

**Ew zingora di mejî**
**Ku zingora dimejî**
**Ku mejiyê min dimijî**
**Min bi kêrê xertinad**
**Û paqij kir ...**

Piraniya çîrok û helbest û biserhatên Qedrîcan di kovarên **Hawar**, **Ronahî**, û **Roja Nov** de hatine çap kirin. Çîrok û serhatiyên Qedrîcan yên çapkirî evên jêrînin:

**"Hewar hebe, Gazî li dayê"**, (kovara Hawar, hejmara 1, sala 1932),

**"Silêman Bedirxan"** (kovara Hawar, hejmar 3, sala 1932)

**"Heviya çarde şevî"** (kovara Hawar hejmar 6, sala 1932)

**"Bihara Dêrkê"** ( kovara Hawar, hejmar 13, sala 1933)

**"Tabûta bi xwînê"** (kovara Hawar, hejmar 11 sala 1933)

**"Gelo newisan"** (kovara Hawar, hejmar 10, sala 1933)

**"Gundê Nû Ava"** (kovara Hawar, hejmar 33, sala 1942)

**"Guneh"** (kovara Hawar, hejmar 16, sala 1933)

**"Rojên Derbasbûyî"** (kovara Hawar, hejmar 52, sala 1943)

**"Gulçin"** (kovara Ronahî, hejmar 16, sala 1933)

**"Sehên Zozanan"** (kovara Ronahî, hejmar 14, sala 1933)

**"Tayê Pora Sipî"** (kovara Ronahî, hejmar 3, sala 1931)

**Wergêrandina pirtûka rêberê Rûsî Grigirî Pêtrov**

Vekolîn kirin li ser berhemên Qedrîcan kareke mezin û demekî zor dixweze, ji ber ku çi pirtûkên wî derneketine, nivîsarên wî jî li ser rûpelên rojname û kovaran belav mane. Kesê ku bixweze lêkolînan li ser nivîsarên wî bike, neçare li wan bigere û bide hev, ev çende jî karekî ne hêsan e.

Gava mirov wan nivîsarên Qedrîcan ên ku li ser kovar û rojnameyên ku di wê demê de belav bûne, dixwîne, sê hizrên cuda ji bo mirov der dikevin, 1- Evîndarî û tama welêt bi hemû fireh bûn û ciwaniya wê ve, 2- Bîr anînên nivîskar li xerîbiyê, 3- felsefe û ramanên wî li ser jiyan û dinê. Tevî ku tam û evîndariya welêt mîna konekî mezin li ser hemû nivîsarên Qedrîcan de tên xuya kirin.

Ew konê mezin ne tenê li ser nivîsarên wî, lê li ser tewahiya jiyana wî jî hatiye hildan. Bixasma heta sala 1944'an pêve Qedrîcan ku xwe mîna



Komonîstekê dide pêş û dixweze gel rabe ser xwe, ew wiha li loriya Bedirxan re dibêje:

**Rabe mêze ke, hebek li doran**
**Te xwe dirêj kir, em pir li ber man**
**Rabe Bedirxan de rabe lo-lo**
**Hişyar be îdî niha pir qenc e**
**Ax Kurdistan ji te ra qenc e**
**Paşiya xewê, bizane renc e**
**Rabe Bedirxan, dê rabe lo-lo**
**Gurê dev bi xwîn, kete nav berxan**

Qedrîcan di kiryar û nivîsarên xwe de, di meydana pêşde birin û nûjen kirina neteweya Kurd de, di meydana şerê azad kirina welatê bav û kalê xwe de, cihekî layiq girtiye û hiş û aqilê xwe bo serxwebûn û serbestiya Kurd û Kurdistanê terxan kiriye. Di vî îş û karî da ewî jî mîna şêrên çiyayên Kurdistanê, dengê xwe ber bi keç û xortan kiriye, di helbest çîrok û serhatiyên xwe de, şîretan li wan dike û dibêje: "ku yêk bin, ji xewa kebîr hişyar bin, xwandevan bin dest bidin destên hev, bibin haval û hevkarên hev, bibin şerkerê bê tirb û xov bo xatirê azadî û serbestiya Kurd û Kurdistanê".

Hez kirina welêt Qedrîcan digehîne dereceyeke bilind ji nijadperestiyê. Di helbesta reşbelek de nivîskar nêrînên xwe naveşêre, hez kirina welêt li cem wî di serweyî hestên olî de ye.

**Yêk nêrîna mêrdîn û birca belek**
**Bi xudê nadim bi "Eswed hecerê**

Qadrîcan di nivîsarên xwe de rewşa jiyana Kurdan nîşan dike, çawa diçin nêçîra berazan, çawa mewîj û sincoqan di kûpan de diveşêrin û ji bo zivistanê hiltînin, dek û dolabên Şêx û Melayên direwîn li Kurdistana paşmayî kifş dike û ji gel re dibêje.

Qedrîcan wekî rewşenbîrekê di nava gel de cihê xwe digire û li dijî nezanînê disekine, Qedrîcan bi wan bîr û baweriyên xurt yên xwe di meydana şerê azadiyê de şervanekî jêhat bû. Lewma ji ber wan bîr û bawerên xwe zaf caran bi destê hêzên dagîrker ve hatiye girtin, gelek ji dcema xwe di girtîxaneyên reş û tarî de bihorandî ye. Lê ne tarî bûna girtîxanan, ne îşkence û lêdan, nekarîn agirê azadiyê ku di dilê wî da cih girtibû, bitemirîne.

Qedrîcan helbestvan û nivîskareke şoreşger, şervaneke Entirnasyonalîst bû. Bi hizr û dîtina Qedrîcan hemû gelên cîhanê birayê hev in.

Helbestvanê nemir Cegerxwîn di helbesteke xwe de ji bo Qedrîcan wiha dibêje:

**Ey hevalo, delalo, tu her tiştî dizanî**
**Di zimanê me Kurdan da tu weke melayê xanî**
**Tu xortekî çelengî, ez kalekî zemanî**
**Dil û gerdan şikestî bide warê xizanî**
**Xwedê te xweş bihêle, tu xortekî ciwanî**

Ji bilî vê yekê Qedrîcan nivîsarên xwe bi zimaneke gelek hêsan û sade nivîsîne, zimanê wan sivik e, her Kurdek dikare jê fam bike. Di ava kirina nivîsarên wî de zehmetek nine, ev bi hêsanî û sivikî hatine avakirin. Ev her du xasmaniyên bingehîn di hemû nivîsarên Qedrîcan de ne. Sebeba wan jî ew e ku Qedrîcan huner û wêjeya xwe di bin xizmeta armanceke siyasî û civakî de xistibû. Bi wê wateyê em dikarin bêjin, ku wêjeya Qedrîcan wêjeya siyaset kirî û bername kirî ye. Lewma hemû nivîsarên wî, heta îro jî di meydana siyaset û wêjeya Kurdî de, roleke bingehîn dilîzin. Nivîskar dixwaze bi her awayî xwe bigehîne xwendevanên xwe, xwe bigehîne neteweya Kurd yên nexwande û şûnmayî (paşmayî), da jêre awayê jiyan û xebatê nîşan bide.

Qedrîcan nivîskar, helbesvan û zanayekî mezin bû, ew bo doza Kurdan şev û roj dixebitî, di Rojhielata Navîn de navê wî baş hatiye bihîstin. Qedrîcan mîna seydayê Kurd Cegerxwîn bibû bazê serbestî û azadiyê, bibû heyloyê bangewaza dostiyê, hevkariya neteweyan, bibû dengbêjê aştiya nav dinyayê. Lê mixabin ew di 56 saliya xwe de, li sala 1972'an li bajarê Şamê çû ber dilovaniya Xwedê.


***Jêder:***

***1. "Tarîxa edebiyata Kurd, (P. Qanatê Kurdo)***

***2. Rojnameya Armanc, hejmar 149***





agirî

Rojnameyeke siyasî û çandiye, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne
Hejmara 8, June 2004

Navnîşan:
AFK
B.P. 102- 75623 Paris
CEDEX 13 –FRANCE

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci.htm

Email:
Rojnama_agiri@yahoo.com

Agiri2003@hotmail.com

Fax: 0012703425105

**Bo Agirî binivîsînin**

Eger bo Agirî dinivîsin ji kerema xwe van xalên jêrîn berçav bigirin:

* Çi nivîsek bê nav û nîşan nayê weşandin. Nivîskar dikare navê dilxwaz bo nivîsa xwe hilbijêr e, Digel navê dilxwaz ji kerema xwe navê xwe yê rastî bo rojnamê bişînin.
* Eger nivîskar ji bo nivîsîn û berhev kirina mijara xwe ji çavkaniyan mifah wergirtibe, hewce ye işare bi van jêderan biket.
* Ev nivîsên ku li zimanên biyanî hatibin wergêrandin, hewce ye îşare pê bê kirin û nav û nîşana jêderê jî bihê dest nîşan kirin.
* Hindî bikarin wêne, xerîte û belgenamên hewce tevî nivîsan bo me bişînin.

**Desteka nivîskarên Rojnameya Agirî mafê vê çendê heye ku:**

Destêwerdana rênûsa nivîsan biket. Wan mijar û babetên ku naverokek lawaz hebin belav neket.

# Çend gotin derheq helbestvan û nivîskarê Kurd Qedrîcan



Qedrîcan jî her wek seyda yên Kurd Cegerxwîn û Osman Sebrî bi miroveki welatparêz hatiye nas kirin. Navê rast yê wî: Ebdulqadir Ezîzcan e. Di sala 1916'an de li gundekê bi navê Dêrkê, li rex bajarê Mardînê li Kurdistana Bakur, ji dayik bûye. Xwendina xwe di Kurdistan û Tirkiyê de kuta dike. Li ber neçariyê dadikeve Kurdistana Sûriyê û li Şamê cihgir dibe. Qedrîcan bo heyamekê li Kurdistana Sûriyê û di derdora Şamê de mamostayiyê dike. Ji sala 1944'an pêve bîr û bawerên Qedrîcan tên guhartin, ew bi Partiya Komonîst a Sûriyê re kar dike. Di sala 1957'an de partî wî dişîne Moskovayê, û beşdarê Kongreya Gencên Cîhanê dibe.

**Dom: R. 19**

# Feleknas Uca carekî dinê bo Parlemana Ewropayê hate hilbijartin



Keça Kurd, Feleknas Uca, endamê gera berê ya Parlemana Ewropayê carekî din bo endametiya Parlemana Ewropayê hate hilbijartin. Li gorî encamên dawî yên hilbijartinên Parlemana Ewropayê li Elmanyayê, Feleknas Uca endamê Partiya PDS li Elmanyayê 6.2% ji dengan wergirt. Bi vê yekê 7 endamên wê Partiyê dikarin bikevin Parlemana Ewropayê. Feleknas Uca di lîsteya partiya xwe de ya 7'emîn e. Piştî serketina xwe di hilabijartinê de Ucayê got: "serkevtina wê serkevtina gelê Kurd e." Her wiha wê got, ku ew dê xebata xwe bo çareser kirina pirsa Kurdî bi hêzeke xurttir berdewam bike. Uca sipasiya hemû Kurdên ku dengê xwe dane wê, kir. Herwiha wê sipasiya xwe bo partî û medyayên Kurdî bo piştgiriya wan ji wê re anî zimên.

Hêjayî gotinê ye ku Feleknas Uca di 1976'an de li Elmanyayê ji dayik bûye. Ew Kurda Êzîdî û ji Bakura Kurdistanê ye.

## Hejmara 8 ya Kovara Birûskê derket




Hejmara 8'emîn ya kovara Çandî, Civakî, Siyasî ya Birûsk, kovara navxweyî ya xwendekarên zanîngeha Razî ya Kirmaşanê hate weşandin. Di hejmara 8'emîn ya vê kovarê de gotarên han têne berçav: "Diremnasiya Bizava Xwendekarî", "dewleta Bazirgan û asayişa neteweyî", "Mafê Mirovan ji xewn hetanî kiryar û piratîkê", Patolojiya vegeryana rewşenbîran di Îranê de", "xelk çawa dibin havwelatî?", "hevpeyvîn digel Mîşil Foko ", "raspardeyên Pêşewa di dema dawî ya jiyana xwe de", "natebahiya Qewmxwazî tevî berevanî kirin ji mafê qewmî", "feqr hafizeya giştî a dîroka Îraniyan di şoreşa 1357'an de", "lênêrînek der barê dîtingeha Femînîsmê" û "pêk hatina Kanona çandî, lêkolînî a Jiyar".

Em hêviya serkevtinên bêtir ji bo xebatkarên birêz yên Kovara Birûskê, dixwazîn.